# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 90 15 - 21 Sibat 2016 basnuce.com


"Sîmir çîroka lêgerînekî ye"



R16





# Hêwlêr li benda hilbijartina DYA'yê nasekine!

Li DYA'yê rojev hilbijartinên serokatiyê ne û herêma ku herî zêde bala wê li ser encamên hilbijartinên serokatiyê ye, bi gelemperî Rojhilata Navîn û taybet jî Herêma Kurdistanê ye. Tê gotin ku polîtîkaya Obama'yê ji Partiya Demokrat, a parastina statukoyê, wê di serdema nû ne neyê birêve birin û tê bawerkirin ku Washington di siyaseta xwe ya niha de israr nake. Pispor piştî hilbijartinan li benda guherînên polîtîkayên Washingtonê yên Rûsya, RHK, Iraq, Sûriye û Îsraîlê ne.

R 02-3-4-5

Daxwaza RHK'ê ya pêkanîna referandûma serxwebûna Kurdistanê beriya hilbijartinên serokatiya DYA'yê jî, piştî hilbijartinan weke vebijêrkeke defakto li pêşiya Rêveberiya Washingtonê disekine. Herçend encamên hilbijartinên DYA'yê wê karîgerî li ser çarenûsa serxwebûna Kurdistanê bike jî, Hewlêr naxwaze li benda encamên biryara hilbijêrên amerîkî bisekine û ji ber vê yekê referandûma serxwebûnê wê pêşiya diyarbûna Serokê nû Amerîkayê ragehîne.



Prof. Naqşîbendî:

## Kurdistan û DYA'yê hevpeymanên giring in

Em li benda hilbijartinên serokatiya Amerîkayê ne. Gelek arîşe û pirsgirêkên mezin niha hatine taloqkirin ji bo piştî hilbijartinê. Serxwebûn jî yek ji wan meseleya ye.

R08-9

Larzan Jandil:

## Kurdkî yew parçe ya

R12

## Di dorpeçê de 460 sivîl hatin kuştin

R14

## Siyaseta kurd ya bê ciwan

R15

Rojava

## Kembera erebi difeşkile



Hêzên kurd yên ku êrişên El Nûsra, Ehrar el Şam, DAIŞ û komên din ên tûndrew pûçkirin, 'Kembera erebî' ya ku ji aliyê rejîma Baas a Hafiz Esad ve salên 1960'an hatibû pêk anîn hildiweşîne.

R10-11

# Hêwlêr li benda hilbijartina DYA'yê nasekine!

Mehmed Salih Batırhan






Li DYA'yê rojev hilbijartinên serokatiyê ne û herêma ku herî zêde bala wê li ser encamên hilbijartinên serokatiyê ye bi gelemperî Rojhilata Navîn û taybet jî Herêma Kurdistanê ye. Herçend encamên hilbijartinên DYA'yê wê li ser çarenûsa serxwebûna Kurdistanê bike jî, Hewlêr naxwaze li benda encamên biryara hilbijêrên amerîkî bisekine û ji ber vê yekê referandûma serxwebûnê wê pêşiya diyarbûna Serokê nû Amerîkayê ragehîne.

Tê gotin ku polîtîkaya Barack Obama ya ji Partiya Demokrat a parastina statukoyê, wê di serdema nû ne neyê birêve birin û tê bawerkirin ku Washington di siyaseta xwe ya niha de israr nake. Pispor balê dikşînin polîtîkaya DYA'yê ya midaxelekirina deverên krîz lê heyî an jî derxistina krîzê ku di serdemên Komariyan de pêk tên û li bendê ne ku di hilbijartinên 2016'an de polîtîkaya DYA'yê ya Kurdistan, Iraq, Sûriye û Îsraîlê guhertin çêbibin. Guhertinên siyasetê êdî serdema nû de tenê di dema ku Komarxwaz bûn desthilatdar, tê gotin ku dema Demokrat jî bûn desthilatdar wê li herêmê taybet jî li hemberî Rûsyayê siyaseteke tûnd bimeşîne.

Herêma ku bandora hilbijartinên serokatiyê li ser çarenivîsa wê heyî RHK ye. Daxwaza RHK'ê ya pêkanîna referandûma serxwebûna Kurdistanê beriya hilbijartinên serokatiya DYA'yê jî, tê nirxandin ku ji bo ku piştî hilbijartinan, weke vebijêrkeke defakto li pêşiya Rêveberiya Washingtonê bisekine.

Li DYA gel xwe ji hilbijartinên serokatiyê yên di meha mijdarê re amade dike. Bi destpêkirina pêşhilbijartinan bernamezd jî derdikevin bernameyên televîzyonan û geşedanên li Rojhilata Navîn jî di rojeva bernamzedan de ne. Di pêşbaziya Komariyan de Donald Trump û Senatorê Texasê Ted Cruz derdikevin pêş. Di nava Demokrat de jî Wezîra Karên Derve ya Berê Hillary Clinton û Senatorê Vermontê Bernie Sanders li pêş in.

Hem berendamên Komarxwaz û hem jî bernamzedên Demokrat têkoşîna kurdan a li dijî DAIŞ'ê ji nêz ve dişopînin û tînin ziman ku divê zêdetir piştgirî ji RHK'ê bê dayîn. Nemazetên jî helwesta Barack Obama a ku lihember wê ye ku yekser ji Pêşmerge re çek bên şandin, tê rexne kirin û dengvedanên redkirina pêşnûmeya ji aliyê Senatoya DYA'yê ku jî Pêşmerge re yekser çek bên şandin jî didomin.

Rojnameger û nivîskarên ku niha li DYA'yê ne û hilbijartinên serokatiyê ji nêzde dişopînin, ragihandin ku polîtîkaya DYA'yê ya li hember kurdan nagûhere û têkoşîna li dijî DAIŞ'ê RHK û DYA zêdetir nêzî hevdû kiriye.

**Tom Setevenson: Dibe ku Barnie Sanders mafên kurdan biparêze**

Tom Setevenson ji BasNûçe'yê re axivî û got ku bigûmana ku namzetên Komarxwaz Donald Trumo û Ted Cruz li ser nexşeyê bizanibin Kurdistanê nîşanî bidin û lê belê namzetên Demokrat wê piştgiriyê bidin tevgerên azadîxwaz. Setevenson balkişand ser cudahiya namzetên Komarxwaz û wiha axivî: "Namzetên Komarxwaz bi taybet jî yên ku niha li pêş in Donald Trumo û Ted Cruz ez bigûman im ku cihê Kurdistanê di nexşeyê de bizanibin di vê derbarê de fikrekî wan hebe. Namzetên Demokrat Hillary Clinton û Bernie Sanders hinek cudatir in. Lê belê raboriyek bihêz a Clintonê ji bo piştgiriya tevgerên azadîzwaz tune ye û ew jî ji gelek aliyan ve dişibe George Bush muhafazakarek klasîk e. Di berdewamiya axaftina xwe de Stevenson diyar kir ku dibe ku ji namzedên Partiya Demokrat Bernie Sanders sîyaseteke biprensîp a ku mafên kurdan diparêze bi rêve bibe û wiha axivî: "Barnie Sanders yek namzede ku di van mijaran de xwedî seknek û prensîb e. Ji ber wê yekê eger yêk mafên kurdan biparêze ev Sanders e. Lê niha ev mijar ji radara Emerîkayê dûr e."

**"Namzet dewleta kurdan niqaş nakin"**

Rojnameger -nivîskar Tom Stevenson amaje bi wê yekê kir ku namzedên Komarxwaz soza biçekkirina kurdan dane lê niha dewletek serbixwe ya kurdan nayê niqaşkirin. Stevenson eşkere kir ku polîtîkaya DYA'yê paralelî ya Tirkiyê ye û ev tişt anîn ziman: "Mixabin asta rabêja polîtîk a DYA'yê gelek girîngiya wê hebû û prensîbî bû, gelek ketiye. Digel vê meseleya serxwebûnê ya li çar parçeyan jî dibe ku nebe mijara niqaşan jî û îxtîmala vê jî gelek kêm e. Heta niha tu namzedan polîtîkaya xwe ya derve pêşkêş nekirin e ev rewş xirab e û heta nih jî bo dewleta kurdan jî ev nekirin e. Polîtîkaya derve ya DYA'yê ji damezrandina wê heta niha li gel Tirkiyê ye. Di encama vê de desthilatdar bi kêfxweşî gel diqewisînên. Ev rewş li Sûriyê û Iraqê di dirûvek ziravtir de ye. Lê bi gelemperî fikrê dewleta kurdî li DYA'yê ne xwedî piştgiriyek bihêz e."


Sirwan Kajjo


Luqman Ehmed


Necîb Balayî

**Sirwan Kajjo: Ajandaya kurd a Komariyan tuneye**

Rojnameger - nivîskar Sirwan Kajjo ku niha li DYA'yê ye eşkere kir ku ji namzedên Komariyan heta niha 4 kesan gotiye ku ew ê piştgiriyê bidin kurdan, lê ji bo piştgiriya dewletek serbixwe ya kurdan tiştek neanîne ziman. Kajjo diyar kir ku di ajandaya kurd a namzedên Komarxwaz de piştgirîkirina kurdan nine lê ji bo biçekkirina kurdan hemû di heman fikrê de ne. Kajjo got, "Ez ne bawer im ku ji bo piştgiriya dewletek serbixwe ya kurdan tiştekê bînin ziman. Komarxwaz zêdetir dibêjin ku pêwîst e çek ji kurdan re bên dayîn. Li gorî min Komarxwaz piştgiriyê nadin serxwebûnê. Komarxwaz di şerê li dijî DAIŞ'ê de dibêjin bila kurd zêdetir bên biçekkirin. Ji ber ku Amerîka naxwaze leşker bişîne Sûriye û Iraqê li şûna wê çekan ji kurdan re dişîne."

Rojnameger Kajjo diyar kir ku hin namzedên Komarxwaz kurdên Rojava û Başûrê Kurdistanê hevgirtî dibînin û ajandayeke wan a taybet ya di derbarê kurdan de tune ye.

**"Hillary Clinton ji bo piştgiriya kurdan sozan dide"**

Sirwan Kajjo ragihand ku namzeda Partiya Demokrat Hillary Clinton propagandaya piştgiriya kurdan dike û got ku wê polîtîkaya wê jî paralelî ya Obama be: "Ji namzetên Demokrat Hillary Clinton soza piştgiriya kurdan dide. Di axaftinên xwe de qala alîkariyên leşkerî û siyasî ji bo kurdan dike. Polîtîkaya derve ya Clintonê wê paralelî ya polîtîkaya derve ya Obama be. Heke bibe serok ez ne di wê fikrê de me ku polîtîkayak cuda bimeşîne." Kajjo her wiha amaje bi wê yekê kir ku heke di serdema nû de namzedek Komarxwaz bibe serok ev wê di berjewendiya kurdan de be û wiha dawî li gotinên xwe anî: "Divê mirov ji bîr neke ku polîtîkaya derve ya DYA'yê digûher in. Carînan hevpeyman dibin terorîst, terorîst jî dibin hevpeyman. Heke Rêveberiya Herêma Kurdistanê serxwebûnê ragihîne dibe ku DYA'yê jî defakto piştgiriyê bide. Lê belê ne pêkane ku mirov bibêje ku DYA wê di demek nêzde piştgiriya serxwebûn û referandûmê bike."

**Balayî: Di derbarê hilbijartinan de tiştekî ku tekez bûye tuneye**

Rojnameger Necîb Balayî yê ku li DYA'yê dimîne jî bal kişand ser hilbijartinên DYA'yê û tekez kir ku hilbijartinên serokatiya DYA'yê hem jî aliyê alema Îslamê ve hem jî ji aliyê welatên Rojhilata Navîn ve ji nêz ve tê şopandin. Her wiha Balayî tekez kir ku berendamên Partiya Komarxwaz heta niha profîleke bi hêz nîşan nedane û namzetên Demokrat jî heta niha siyaseteke bi hêz birçêve nebirine. Li aliyê din Balayî daxuyand ku tu helwesta, namzetan ji bo rapirsîna serxwbûna Kurdistanê jî tuneye û wiha berdewam kir: "Niha hilbijartinên pêşwext hene. Tiştekî ku tekez bûye tuneye. Namzet niha xwe û polîtîkyên xwe didin nasandin. Di derbarê kurdan de hin sozan didin lê belê divê ev ewqasî zêde neyên mezin kirin."

Her wiha Balayî bal kişand ser danûstendinên dawî yên di navbera Washington û Hewlêrê jî û amaje bi wê yekê kir ku heta ku kurd yekgirtinê saz nekin ew ê piştgiriyê ji DYA'yê nestînin. Balayî ragihand ku DYA'yê geşedanên li herêmê ji nêz ve dişopîne û wiha axivî: "Li Kurdistanê qeyraneke darayî heye. Şerê bi DAIŞ'ê re, koçberên ku li Kurdistanê ne qeyraneke mezin pêkanîn li Kurdistanê. Rayedarên DYA'yê ew ê piştgiriya Kurdistan bikin. Di şerê lik dijî DAIŞ'ê de ew ê piştgiriya Kurdistanê bikin. Nûnerê Peywendiyên Derve yê PDK'ê Hêmin Hewramî beriya bi çend rojan li vir bû. Em li ser danûstendin û dîplomasiya DYA û Kurdistanê axivîn. Heta ku kurd wêneyekî yekgirtî nîşan nedin DYA'yê ew ê pişgtiriyeke xurt nede kurdan. Me ev yek ji Hewramî jî re got."

**Ehmed: Rapirsîna serxwebûnê ji DYA'yê jî giring e**

Rojnameger Luqman Ehmed jî dide zanîn ku namzetên Partiya Komarxwaz, di bangeşeya xwe ya hilbijartinê de çekdarkirin û piştevaniya li kurdan derdixin bê û wê yekê tînin ziman. Her wiha Ehmed amaje bi wê yekê jî kir ku li gel piştevaniya li rapirsîna RHK'ê piştevaniya kurdên Rojava jî di rojeva bernamzetan deye û axaftina xwe wiha domand: "Bi taybetî namzetên Partiya Komarxwaz, eşkere dikin ku di şerê li dijî DAIŞ'ê de divê bêhtir alikariya kurdan bê kirin. Ne bi tenê piştevaniya hêzên Başûrê Kurdistanê, piştevaniya aliyên din ê kurd jî di rojevê deye. Kurd li DYA'yê weke hêzên herî sereke yên li dijî DAIŞ'ê şer dikin tên zanîn." Li aliyê din jî Ehmed derbirî ku bernamzetên DYA'yê hem ji ber polîtîkaya NATO'yê hem jî ji ber berjewendiyên hin dewletên din piştevaniya xwe ya ji rapirsîna serxwebûnê re eşkere nakin. Di berdewamiya axaftina xwe de Ehmed ragihand ku serxwebûna Kurdistanê hem ji bo bo DYA'yê hevpeymanên giring e.

Her wiha Ehmed bal kişand peywendiyên dîplomasiyên yên Washington û Hewlêrê û wiha axivî: "Rayedarên pilebilind ê DYA'yê diçin Hewlêrê, rayedarên Kurdistanê jî tên Washingtonê,Serok Mesûd Barzanî jî hat Washingtonê. Peywendiyên wan bi kurdan re baş in. Di şerê li dijî DAIŞ'ê de hemahengiyek baş pêk hat." Ehmed rave dike ku hin dewletên li herêmê dijî hebûna dewleteke kurdî ne û ji ber wê yekê jî DYA'yê naxwaze bikeve nava arîşêyên li Rojhilata Navîn. Ehmed di berdewamiya axaftina xwe de amaje bi wê yekê jî dike ku heta havînê ew ê hem ji bo kurdan hem jî ji bo DYA'yê rewş zelal bibe û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Di ajandaya DYA'yê de serxwebûn heye an tuneye em nizanin. Lê belê Îran û Tirkiye dijî serxwebûna Kurdistanê ne. DYA'yê jî ji ber berjewendiyên xwe naxwaze din ava meseleyan de cih bigre. Arîşeya kurdan arîşeyeke mezin e. Lêbelê şerê kurdan e li dijî DAIŞ'ê derfeta wê yekê peyda dike ku ew ê piştevaniya leşkerî û siyasî ji bo kurdan berdewam bike. Di havînê de ew ê hemû tişt zelal bibe."

Namzetên Serokatiya DYA:

# Dostaniya kurdan nirxeke mezin e

**Uzay Bulut - Washington**

Bi nêzîkbûna hilbijartinên DYA'yê re namzetên partiyên Komarparêz û Demokrat li ser heman xalê disekinin: Dema bibin desthilat ew ê ji kurdan re rasterast çek bişînin. Bernamzetên Partiya Komarparêz yên ku di serokatiya DYA'yê de derdikevin pêş Serokê Organîzasyona Trump Donald Trump û Senatorê Teksasê Ted Cruz in. Bernamzetên din yên Partiya Komarparêz Senatorê Florîda Marco Rubio, Parêzgerê Ohio John Kasich, Parêzgerê Berê yê Florida Jeb Bush, Dr. Ben Carson û Parêzgerê Berê yê Virginia Jim Gilmore in.




## Donald Trump:
**Kurd wêrek in, divê em çek bidin wan**

Serokê Organîzasyona Trumpê Donald Trump, di Tebaxa 2015'an de dema ku ji bo axaftinekê çû paytexta Parêzgeha Tennessee, Nashvilleê, piştî ku rojnamegerekî Kurdên Nashvilleyê bi bîra wî xist wiha qala piştgiriya xwe ya ji kurdan re kir: "Divê em kurdan bi çek bikin. Kurdan nîşanî hemû dinyayê dan ku ew şervanên herî baş in û wan şanî me da ku ew hêza herî dilsoz a dost in... Dixwazim vê yekê bêjim. Divê em ji wan sûd werbigirin. Kurd, mirovên wêrek û mezin in û şervanên bêhempa ne. Ji niha şûnve divê em bi wan re pir zêdetir bixebitin."

## Ted Cruz:
**DYA, dostaniya kurdan nirxeke mezin e**

Senatorê Texasê Ted Cruz, di Sebata 2015'an de, di hevpeyvîna xwe ya li gel CNN'ê de kurdan wek "Nirxê mezin ê DYA yê herêmê" nîşan da û got: "DYA, li herêmê xwedî nirxeke mezin e: Kurd. Pêşmerge, hevkarekî mezin ê DYA ye. Kurd şervanên pir cengawer in û pêdiviya wan bi alîkarî û çekan heye. Lê mixabin rêveberiya Obama her alîkariya ji Pêşmerge re talox dike. Ji dêlva ku ji Pêşmerge re rasterast çek bişîne, bi ser Bexdayê re dişîne. Astengiyan derdixe ku kurd rasterast nefta xwe bifroşin. Ev pir bêwate ye. Herwiha rêveberiya Obama li ser opozisyonên Sûriyeyê hûr bûye. Piraniya van opozisyonan bi terorîstên Îslamîst ên tûndrev re pêwendîdar in û piştgirîdayîna wan qet ne karekî jîrekî ye. Kurd hevkarên me ne û hêzên şerker ên herêmê ne. Ger em bi kurdan re tevbigerin, li gel hêza asmanî, ew amade ne ku di eniya herê pêş de li dij DAIŞ'ê şer bikin. Ger ku armanceke me ya leşkerî ya tunekirina DAIŞ'ê hebe, divê em wisa bikin."

## Jeb Bush:
**Kurd hêza herî mezin a şerker û hevkarên me yên herî xurt in**

Parêzgerê berê yê Floridayê Jeb Bush, di meha Tebaxa sala çûyî de, di axaftina xwe ya li Californiayê de got: "Divê em rasterast çekan bidin kurdan. Kurd hêza herî mezin a şerker û hevkarên me yên herî xurt in." Bush wiha dom kir: "Divê zêdetir piştgiriya kurdan bikin. Divê em piştgiriya leşkerî bidin wan da ku dikaribin DAIŞ'ê ji holê rakin. Li herêma kurdan a Iraqê dostên me yên dilpak hene. Şervanên wêrek û şareza ne. Ger ez bibim serfermandar, ji bo kurd bi ser bikevin, wê DYA her tiştî pêşkêşî wan bike."

Pêwendiya kurdan û malbata Jeb Bush'ê ku vê axaftina wî bi çepikên bi coş hate pêşwazîkirin ji berê ve; ta ji dema Şerê Kendavê yê 1991'an ve xurt e. Piştî vî şerê kendavê ku kurd tûşî qeyraneke mezin a penaberbûnê bûbûn, Serokê DYA yê wê demê George H. W. Bush ji bo kurdan qadeke qarastinê pêk anîbû. Kurê wî George W. Bush jî di dema serokatiya xwe de, di 2003'an de rejima Seddam Huseyn rûxandibû û rê li ber bidestxistina mafê federasyonê yê kurdan vekiribû.

## Ben Carson:
**Divê em bi kurdan re tevbigerin**

Di 15'ê Kanûna sala borî de di bernameya gotûbêja bernamzetên partiya Komarparêz a CNN'ê de tekoşîna li dij DAIŞ'ê babeta sereke ya vê bernameyê bû. Lewre, di 2'yê Kanûnê de li bajarê San Bernardino yê California'yê, ji alî 2 endamên DAIŞ'ê ve êrîşeke çekdarî pêk hatibû û di encamê de 14 sivîl hatibûn kuştin û 24 jî birîndar bûbûn. Bernamzetên Komarparêz rîwangeyên xwe yên di derbarê şikandina DAIŞ'ê de diyar kirin û pêwîstiya rasterast çek şandina ji bo kurdan destnîşan kirin. Dr. Ben Carson bi gotina; "Xuya ye em ditirsin ku çekan bidin kurdan" dest bi axaftina xwe kir û wiha dom kir: "Kurd, di operasyona rizgarkirina Şengalê de bi ser ketin. Divê em operasyonên wiha bidomînin. Divê em hêzên xwe bi kurdan re tevbigerînin, rêyên arastekirina hêz û bazirganiya DAIŞ'ê bigirin, bi bombebaranê hêza wê ya bergiriyê bişkênin û li gel êrîşên asmanî hêzên xwe yên taybet bişînin û DAIŞ'ê ji holê rakin."

## John Kasich:
**Divê em piştgirî bidin kurdên Sûriye û Iraqê**

Parêzgerê Ohio John Kasich ji di Mijdara sala çûyî de, di daxuyaniya de wiha axivî: "Divê em hem li Sûriyeyê hem jî li Iraqê bêtir piştgirî bidine kurdan. Kurdên ku ji bo parastina welatên xwe şer dikin, wek pilingan şer dikin û ji yek ji çend hêzên ku bi dostanî nêzîkî DYA dibin in. Wan nîşan daye ku divê li dij DAIŞ'ê çawa şer bê kirin. Divê di warê alîkariya çakdarî de ji niha pêve comerdtir bin."

## Mark Rubio:
**Bexda alîkariya kurdan neke, divê em rasterast çek bidin kurdan**

Senatorê Florîdayê Mark Rubio jî di daxuyaniya malpera xwe ya fermî ya înternetê ya bi serenavê "Plana têkbirina DAIŞ'ê" de diyar kir ku ji bo têkbirina DAIŞ'ê divê êrîşên hewayî zêde bibin û hevpeymaniya navneteweyî ya li dij DAIŞ'ê xurttir bibe. Yek ji xalên ku Rubio girîng nirxandiye jî ev e: "Ger ku Bexda alîkariya kurdan û hêzên sunne neke, divê DYA ji kurd û sunneyan re rasterast çek bişîne."

Rubio, her wiha her wiha diyar kirî ye ku ew ji bo aramiya herêmê hem DAIŞ'ê û hem jî Esad xeter dibîne.

## Bernie Sanders:
**Divê em kurdan çek bidin kurdan**

Rojek piştî êrîşa Parîsê ya 13'ê Mijdarê Bernamzetê Partiya Demokrat Senatorê Vermontê Bernie Sanders di bernameya nîqaşê ya CNN'ê de rastî pirsa; "Hûn piştgirî didin çekdarkirina hêzên kurd û Pêşmerge?" hat. Sanders wiha bersiv da vê pirsê:

"Her çiqas mirov nizanibe gelo ev mirovên ku îro em wan bi çek dikin, sebêroj wê pişta xwe bidin me yan na? jî, bi raya min divê em çek bidin kurdan. Divê em piştgiriya hewayî û çekdarî bidin mirovên ku em bawerî bi wan tînin. Em dizanin ku te raya redkirinê da pêşniyaza perwerdekirin û çekşandina serhildêrên opozisyona Sûriyeyê. Gelo di navbera Pêşmerge û van serhildêran de cudahî heye? Divê tenê ji Pêşmerge re çek bêne şandin?" Piştî vê pirsê jî Sanders vê bersivê da: "12 sal in em di nav şer de ne. Me bi trîlyonan pere xerc kir. 500 hezar leşkerên me yên ku piştî tûşî stresa piştî travmayê û ziyana mêjî ya travmatîk bûne û vegeriyane malên xwe hene. Tiştê ku ez naxwazim û jê ditirsim ew e ku DYA bikeve ritamekê şer ku bi salan nikaribe jê derkeve."

## Hillary Clinton:
**Ger Bexda qebûl neke, divê hêzên hevpeyman çek bidin kurdan**

Hillary Clinton jî meha Mijdarê, di axaftina xwe ya Lijneya Pêwendiyên Derve ya Kongreya DYA'yê de, li dij DAIŞ'ê planeke nû ya çalakiyên leşkerî pêşkêş kir: "Tirkiye, heta niha ji dêlva ku li dij DAIŞ'ê têbikoşe, berê xwe daye kurdan. Serpêhatiyeke drêj û bi azar a Tirkiyeyê ya bi komên terorîst ên kurd re heye. Lê belê



gefa ku DAIŞ'ê derxistiye holê lezgîniyê pêwîst dike. Çiqas zor be jî divê Tirkiye dev ji bombekirina hêzên kurd ên ku li Sûriyeyê li dij DAIŞ'ê têdikoşin berde û divê em hewl bidin ku Tirkiye di tekoşîna me ya li dij DAIŞ'ê de wek hevparekî baş ê hevpeymaniyê hewl bide."

Clinton, diyar kir ku li aliyê din ê sînorê Iraqê, hêzên kurd, ji bo parastina axa xwe û rizgarkirina deverên di bin dagirkeriya DAIŞ'ê de, bi wêrekî şer dikin, lê Artêşa Iraqê jî dinale û dom kir: "Ji bo artêş xwe bide hev xebateke mezin pêwîst e. Wek aliyekî vê pêvajoyê, divê em ji bo leşkerên xwe yên ku Iraqiyan perwerde dikin bêtir derfetan pêkan bikin ku şarezayiya xwe ya tevgerînê pêk bînin. Ev yek jî bi beşdarbûna leşkerên me ya yekîneyên herêmî û alîkariya êrîşên hewayî dikare pêk bê." Clinton di dawiyê de jî wiha got:

"Di şerê li dijî DAIŞ'ê de divê Bexda çekşandina hêzên kurd û sunne qebûl bike û erênî bibîne. Lê belê ger ku Bexda vê yekê neke, divê hêzên hevpeyman rasterast vê yekê bikin."

# Di hilbijartinên DYA'yê de kurd li ku cîh digrin?

**Mustafa Acar - Washington**

Di hilbijartinên serokatiya DYA'yê de roj bi roj diyar dibe ku bê kî berendam in. Rapirsîn û hijbijartinên pêşî xuya dikin ku pêşbirk di navbera namzetên Demokrat Hillary Clinton û Bernie Sanders; her wiha di navbera namzetên Komarparêz Donald Trump û Ted Cruz her diçe geştir dibe. Berendamên Komarparêz bi giştî kampanyayên xwe li ser bêkêriya polîtîkayên Obama yên Rojhilata Navîn dirîsin, ev jî bandora geşedanên Rojhilata Navîn ê li hilbijartinên DYA'yê derdixe holê.

Obama jî bangeşeyên xwe yê hilbijartinê li ser polîtîkayên George W. Bush yê ku mudaxaleya bi leşkerî ya Iraq û Afxanistanê kiribû, li ser şerên Rojhilata Navîn û bandora van şeran ku neyênî li ser aboriya DYA yê kiribû dimeşand.

Heyamên DYA'yê yên ku di mudaxaleyên Iraq û Afxanistanê ji pêşdîtinên wê zêdetir pêk hatibû û di heman demê de artêşa DYA'yê ji hewcedariya ku li wan welatan bimaya zêdetir li wir mabûn û ev jî bandorek mezin pêk anîbû ku Komarparêz têk biçin. Partiya Demokrat xebatên xwe bi Obama re meşand û li ser rêveberiya Bush bi polîtîkayên ku li Rojhilata Navîn pêk anîbû rexnekirin û bi serkeftî ji xwere deng wergirtin.

Di vê hilbijartinên de jî heman tiştî namzetên Komarparêz dikin û rêveberiya Obama ku li Rojhilata Navîn polîtîkayên rexnedikin û wek sedemê jî ji ber ku Washington li herêmê gavên pêwîst neavêtiye bûye sedema parastina hêza DAIŞ'ê heta niha nîşan didin. Partiya Komarparêz, li gel kêm kontrolkirinên hêzên çekdar yên Rojhilata Navîn, tekez dikin ku ji ber wan polîtîkayan hêza herêmî ya mezin Îran jî ji vê valahiyê sûd wergirtiye û bandora xwe zêdetir kiriye û rêveberiya Obama jî bi wê yekê tewanbar dikin.

Encama ku ji vê derdikeve ev e ku Komarparêz dixwazin ku li Rojhilata Navîn xwedî rolên hîn çalaktir û aktîftir bin. Her çiqas polîtîkayên derve û tûndiya Îslamî ne pêşikiya Partiya Demokrat be jî, bi hêzbûna DAIŞ'ê ku hê jî li Iraq û Suriyeyê ye, gefên ku DAIŞ'ê piştî êrîşa Parîsê li Washingtonê kiribû û ew ê çalakiya pêk bînin xuya dike ku li DYA'yê bibe serdest nikare gefên DAIŞ'ê li ber çav negire û di vê rewşê de jî ew ê kurd û DYA her nêzîkî hevbibin.

**DYA çima nikare dev ji kurda berde?**

Dema hilbijartinê DYA'yê de bernamzetê serokatiya Partiya Komarxwaz di kampanyayê xwe de diyardikirin ku DYA divê li hemberî DAIŞ'ê zêdetir rol bigire. Bi taybetî namzetên Komarxwaz dixwazin ku bi giştî hêzên kurd bi çekan bêne bi hêz kirin. Di vê derê de jî tê femkirin ku hêzen kurdan di Rojhilata Navîn de hêza serekeye û di lîga listikvanan de cihê xwe girtiye. Di dema êrişên DAIŞ'ê de hate ditin ku kurd hêzeke mezin e û projeya Rojhilata Navîn bê kurd nabe û DYA jî ev tişt ferq kiriye.

Pirsa ku "Kurd ji bo DYA'yê çima ewqas girîng in?" mîrov dikare wiha bibersivîne: Hêzên kurd li hemberî rêxistinên îslamîst ên radîkal wek DAIŞ û El Qaideyê de hêza serekeye ku tekoşînê dike, di Rojhilata Navîn de ji hêzen antî demokratîk cûdatir in, nêzikî nirxê hêzen Rojava ne, di nav çanda wan de Îslama radikal nikare cih bigire, civake ke sekuler nînin û ji hemû beweriyan re toleransa wan heye. Ev taybetiyen wan di heremê de xeynî wan di tu civakê te tuneye. Kurd hem ji bo Komarxwazan hem jî ji bo Demokratan dibin mutefîkên bê hempa.

Tenê Komarxwaz pêşniyar dikin ku "bila kurd raste rast werin bi çek kirin", ev jî nakokiyê dixe nav polîtikaya Serokê Demokratan Barack Obama ya ku heta niha meşandiye û divê "Iraqa yekpare" an jî "Yekitiya Iraqê." Gelek kes dibêjin 'bila kurd raste rast werin bi çek kirin', ev jî ji têkiliya navbera Hikumeta Bexdayê û ya Tehranê nexweş in ji ber vê jî ewê biçekkirina kurdan de bi tesir bin.

**Namzetên Komarxwaz di van mijiran de rêveberiya Obama rexnedikin:**

1. Nayê xwestin ku raste rast kurd bêne bi çekkirin.
2. Li Sûriyeyê rêveberiya Obama alîkariyê dide 'hêzên muxalîf yên çekdar' ku derket holê bi layangirên El Kaîdê ne. Bi projeya "perwerdekirin û bi teçhîzkirin" de alîkarî tê kirin.
3. Rejima Îranê hînjî nehatiye guhertin û serokê nû Hesen Rûhanî ku li dijî polîtikaya DYA'yê de ku tu guherînek pêk nehatiye kirin, lê di mijara enerjiya nûkleerê dê peymanek hatiye çêkirin.
4. DYA bi Îranê re peymanek çêkiriye û Serokê Rêvebiriya Filistînê Mahmud Abbas pesnê çalakiyê terorê yê li hemberî Îsraîlê daye û rêvebiriya Obama li hemberî van helwest nişan nedaye û Îsraîl li heremê bi tena serê xwe hiştiye.
5. Di mudaxeleya leşkerî ya li dij DAIŞ'ê de DYA dereng ma.

Bûyerên ku li Rojhilata Navîn diqewimin, rolên hilbijartinên serokatiya DYA'yê û hilbijartinên vî welatî û encamên wê li ser qedera Rojhilata Navîn bi hevdû re girêdayî ye. Li ser van xalan, di civakê de bawariya ku DYA ger di qadên şer de bi kurdan re bibe hevkar wê bikaribe Rojhilata Navîn ji nûh ve dizayn bike. Di vir de pirsa ku derdikeve pêş ev e: Gelo kurd dizanin ku di Rojhilata Navin de xwedî hêzeke mezin in û gelo wê bikaribini li gorî vê hêzê siyasetekî pêşbixin.

## Li dij qeyrana darayî biryarên nû

# Barzanî mudaxeleyê hikûmetê kir

Mustafa Turan

Li Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK), piştî ku qeyrana aborî aloztir bû û grev û çalakiyên protestoyî belav bûn, Barzanî biryarên ku xercên hikûmetê kêm dikin û şirketên ku têkilî gendeliyê bûne ceza dikin stend. Bi van biryaran re bayê protestoyan sekinî.
Piştî ku ji reformên Hikûmeta RHK'ê û serdana Bexdayê encamên baş derneketin û li Silêmanî, Kelar û hin deverên din, bi beşdariya erkdarên olî bayeke protestoyî rabû, Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî dest danî ser meseleyê.

Ji ber reformên ku Hikûmetê ji bo çareserkirina qeyrana aborî da destpêkirin bûn sedemê astenbûna debara gel, li RHK'ê bayeke mezin ê protestoyî destpê kir. Ji ber ku di babeta çareserkirina qeyrana siyasî de Goran ji şertên xwe nehate xwarê, bi hikûmetê re Goran jî bû armanca rexneyan.

Di pêvajoyeke ku li gel qeyrana aborî jî, li ser referandûma serxwebûnê gellek nîqaş dihatin kirin de destpêkirina protestoyan bû sedemê nirxandinên ku Îranê adres nîşan didin. Piştî van geşedanan Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî berovajî reformên hikûmetê ku çavkaniyên debara gel teng dike, biryarên ku pêşekiyê dide kêmkirina xercên hikûmetê û destdanîna sermiyanê şirketên ku tûşî gendeliyê bûne ragihand. Bi vê mebestê wê binesaziya rêveberî û darayî ya Hikûmetê û rêveberiya Hêzên Pêşmerge ji nû ve bê sererastkirin û kontrolkirin. Her wiha biryarên wek; Ji bo tekoşîna li dij gendeliyê damezirandina komîsyoneke çalak, kêmkirina xercên wezaret û dezgehên hikûmetê û ji şirketên ku heta radeyekê qezenc dikin wergirtina beşek ji qezenca wan jî hatin stendin.

### Qezenca deryasayî tê cezakirin

Li gor daxuyaniya ku hefteya çûyî di malpera fermî ya Serokatiya RHK'ê de hatiye belavkirin, Barzanî bi sparteka rayeya ku destûra RHK'ê daye wî van biryara daye. Di vê çarçoveyê de bi van biryaran mebest ew e ku danûstendinên dezgehên hikûmetê bê lezgînkirin, xercên hemû dezgehan bê mînîmîzekirin, pergala rêvebirî û aborî bê sererastkirin û kontrolkirin û ji bo çareserkirina qeyrana aborî ji şirketên ku di çarçoveya yasayî de karên xwe dimeşînin daxwazkirina piştgiriya darayî û ji bo piştgiriya van şirketan arasteyî gencîneya RHK'ê bibe mekanîzmayeke goncav bê sazkirin.

Di biryarên Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî de xeleke grîng ku balê dikêşe jî ev e: Di derbarê şirketên ku tûşî gendeliyê bûne û bi rêyên deryasayî qezencên mezin bi dest xistine wê lêpirsîn bêne destpêkirin û ger aşkere bibe ku gendeliyê kirine, wê sermiyanê wan bê desteserkirin û bi ser mekanîzmayeke dadwer ji gencîneyê re bê şandin.

Her wiha ji bo pêkanîn û şopandina van biryaran jî wê komîsyonek bê damezirandin û wê ev komîsyon çavdêriyên xwe wek raport pêşkêşî Serokê RHK'ê bike. Ev biryarên grîn ji alî şîrovekarên siyasî ve wek mudaxeleya qeyrana aborî ya Barzanî hate nirxandin.

### Goran piştgirî dide reformên Barzanî

Tevgera Goran ku ji mêj ve rikberê çaraserkirina qeyranên aborî û siyasî bû û ji şertên xwe nedihat xwarê, ji bilî daxuyaniyên hin berpirsên wê, ji bo çareseriyê helnaweste. Lê belê Rawêjkarê Tevgera Goran Kardo Mihemed, ragihand ku ew di çarçoveya reform û jinûve avadankirina rêveberiyê ew grîngiyê didine biryarên Barzanî, lê belê divê çarçoveya yasayî ya van biryaran jî bê çêkirin. Kardo Mihemed ji BasNûçe'yê re axivî û got: "Nabe ku barê qeyrana aborî tenê li ser pişta gel bê barkirin. Divê dahatên bacê li gor rewşa aborî bi yeksanî bê berhevkirin. Hin çavkaniyên dahatî hene ku eger bi rêkûpêk bêne bikaranîn, dikarin di gellek babetan de pirsgirêkan çareser bikin. Ji bo vê yekê divê herkes piştgirî bide biryarên reformên Barzanî.



### Destpêkirina protestoyan hatibû pêşbînîkirin

Piştî ku qeyrana aborî ya ku bi despêka şerê DAIŞ'ê û peydabûna mesrefên şer, koçkirina nêzîkî 2 milyon penaberan û li gel ku di destûra Iraqê de hatiye destnîşankirin jî, ji alî Bexdayê ve rewestandina şandina ji sedî 17 para budceya RHK'ê û mûçeyên Pêşmerge û karmendan gihîşte asteke aloz, di Cotmeha 2015'an de li Silêmanî, Ranya, Kelar û bi taybetî li Qeledizê, bi hinceta ku mûçeyên karmendan nayê dayîn protestoyan destpêkirin û bi sorkirina hin alîgirên Tevgera Goran, ev protesto tûşî tûndiyê bûn û di encama van protestoyan de 5 kesan jiyana xwe ji dest dabû û bêtirê 200 kesan jî brîndar bûbûn.

Li dû van geşedanan bi kêmbûna dîrokî ya bûhayê neftê ya nêzîkî ji sedî 80 û ji alî Bexdayê ve neşandina budceyê û li dij vê biryarê biryara rawestandina arastekirina neftê ya Hewlêrê rewşa aborî ya RHK'ê hin aloztir bû. Piştî ku Hewlêrê dest rasterast frotina nefta Kurdistanê kir jî qeyrana aborî çareser nebû Hikûmeta RHK'ê biryara pêkanîna hin reforman da. Lê belê li gel vê jî mamoste û karmendên ku nêzîkî 5 mehan e mûçeyên xwe wernegirtine dest bi grev û protestoyan kirin.

Li Silêmanî piştî ku mamoste û akademîsyenan ji ber wernegirtina mûçeyên xwe dest bi boykotkirina dersan kirin, 38 niştgehên xwendekaran jî ji ber ku vala bûn hatin girtin. Li Hewlêrê jî xwendekarên Kampûsa Şehîd Şewket Şêx Yezîdîn ji ber qutbûna elektrîk û avê niştgehên xwe vala kirin, rêya Hewlêr û Kerkûkê girtin û dest bi xwepêşandanê kirin.

### Şêx Cafer Mistefa: Pêşmerge ji bo mûçe protesto nekir

Li Silêmanî, Gerînendehiya Elektrîkê, hişyarî dan ku ger mûçeyên xebatkarên wan bê birrîn, ew ê elektrîka bajar bibirin û dest bi greva giştî bikin. Piştî ku karmendên Gerînendehiya Ewlehiyê jî bi heman sedemî dest bi greveke rojane kirin, li Ranya û Koysancaxê jî polês û xebatkarên tendurustiyê beşdarî çalakiyên protestoyî bûn.

Ji alî din ve piştî ku li Helebceyê jî çalakî destpêkirin, alimên olî jî piştgirî dane van çalakiyan. Di hin dezgehên ragihandinê de jî hate angaştin ku komek ji Pêşmergeyên Fermandariya Alaya 70. a Silêmanî jî bi himceta ku mûçeyên xwe wernegirtine dest bi çalakiyeke protestoyî kirine. Piştî belavbûna nûçeyên bi vî rengî, Fermandarê Alaya 70. Şêx Cafer Mistefa ragihand ku van Pêşmergeyan ne ji ber vernegirtina mûçe, ji ber jênerazîbû fermandarê yekîneya xwe vê çalakiyê pêk anîne û van dezgehên ragihandinê bi alozkariyê rexne kir.

### "Gel ji reformên Barzanî razî ye"

Berpirsê Pêwendiyên Giştî yê Serokatiya RHK'ê Hamid Derbendi di bersivdana pirsên BasNûçe'yê de da zanîn ku protestoyan wek pêlekê ji nişk ve destpê kirî ye û belav bune, ji ber ku rûdanên tûnd pêk nehatine ew kêfxweş bûne û li gellek deveran ev protesto rawestiyane. Derbendî got: "Hikûmetê di reformên xwe de pêşekiyê da kêmkirina mûçeyên karmend û xebatkaran û zêdekirina bûhayê benzîn, mazot û pêdiviyên din yên ku di jiyana rojane de ji alî gel ve pir têne bikaranîn. Ev yek bû cihê nerazîbûna gel, lê belê ji ber ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di reformên xwe de pêşekiyê da kêmkirina xercên hikûmetê û bergiriyên dijî gendeliyê, li gel Tevgera Goran, ji alî hemû beşên siyasî û civakî ve bi xweşhalî hatine pêşwazîkirin. Ji ber ku di nav gel de baweriya bi hikûmetê kêm bûye, gel ji reformên hikûmetê razî nebû û bi protestmoyan vê nerazîbûna xwe anî ziman. Ji ber ku Serokê RHK'ê Birêz Mesûd Barzanî jî vê yekê dît, van reformên nû ragihand û reformên Barzanî bi xweşhalî hatin pêşwazîkirin. Tevgera Goran bixwe jî daxuyand ku ew van reformên nû erênî dibîne. Hêvî ew e ku ev erênîbûn bandorê li hewlên çareserkirina qeyrana siyasî û aborî jî bike. Li gel van geşedanên xweş jî ya grîng ew e ku ev reformên Birêz Barzanî bi rêk û pêk cîbicî bibin."

### "Operasyona Mûsilê ji Kurdistanê destpê dike"

Hamid derbendî her wiha di derbarê operasyona Mûsilê ku demek e di rojeva RHK'ê de ye jî axivî û lezbûna amadekariyên operasyonê piştrast kir. Derbendi got: "Hem Artêşa Iraqê hem jî Hêzên Pêşmerge lez dane amadekariyên operasyona rizgarkirina Mûsilê. Sedemê bi cihkirina hêzeke ji Artêşa Iraqê jî xebatên amadekariyên vê operasyonê ne û hatina vê hêza artêşê bi koordînasyona RHK'ê pêk hatiye. Jixwe Hêzên Pêşmerge ji mêj ve ji vê operasyonê re amade bû. Pêşbîniya me ew e ku di nîvê salê de wê operasyon destpê bike."




### "750 leşkerên Iraqî li Kurdistanê ne"

Berpirsê PDK'ê yê Mûsilê Seîd Memûzînî jî ji BasNûçe'yê re ragihand ku agahiyên ku di hin dezgehên çapemeniyê têne belavkirin ku hêzêke Artêşa Iraqê ya ji 4500 leşkeran pêk tê li Kurdistanê bi cih bûye dûrî rastiyê ye û got: "Tenê 750 leşkerên Iraqî di bin çavdêriya Hêzên Pêşmerge de li Mexmûrê bi cih bûne. Memûzînî, di derbarê hebûna DAIŞ'ê ya li herêmê de agahiyên balkêş dan û got: "Ji bilî yekîneyên artêşê yên ku li Mexmûrê bi cih bûne, hêza sereke ya Artêşa Iraqê 180 kîlometre dûrî Mûsilê ye û heta Ramadiyê hatiye û beriya ku xwe bigihîne Mûsilê, divê Fellûce û Şirgatê rizgar bike. Ger ku van her dû bajaran rizgar bike jî, hê 150 kîlometre li dûrî Mûsilê dimîne, lê belê Hêzên Pêşmerge li hin deveran 10 kîlometre nêzîkî Mûsilê bûye û di pozîsyoneke çalak û tafilê dikare dest bi êrîşa Mûsilê bike de ye." memûzînî diyar kir ku li gel astengiyên meydanî, di warê hêzdariyê de jî Artêşa Iraqê bi tena serê xwe nikare operasyona Mûsilê pêk bîne û wiha dom kir: "Ji bo operasyona Mûsilê, stratejiya herî goncav ev e ku li gel piştgiriya êrîşên asmanî yên Hêzên Hevpeyman, bi hevkariya Artêşa Iraqê, Hêzên Pêşmerge û komên çekdar ên erebên sunne pêkanîna operasyonê ye." Memûzînî diyar kir ku herçend komên sunne di pratîkê de sûdeke mezin li operasyonê nekin jî, ji ber ku piraniya şêniyên Mûsilê erebên sunne ne, wê beşdarbûna çekdarên sunne sûdeke pozîtîf li operasyonê bike."

### DAIŞ koçî Lîbyayê dike?

Seîd Memûzînî di berdewamiya axaftina xwe de ragihand ku koordînasyona operasyonê li Jûra Kontrolê ya ku li Hewlêrê hatiye sazkirin tê kirin û di vê jûrê de berpirsên Wezaretên Parastinê yên RHK'ê û Iraqê û yên hevpeymaniya navneteweyî cih digirin. Memûzînî got: "Bi raya min wê operasyon negihîje nîvê salê, lê belê ger ku şert û merc rê bidin, dikare di vê demê de jî pêk bê." Memûzînî diyar kir ku di derbarê rezgarkirina Mûsilê de angaştên cuda têne kirin û van angaştan wiha vegot: "Li gor hin agahiyên îstixbaratî sê payîn têne kirin. Yek jê; Tê gotin ku DAIŞ êdî têgihîştiye ku li Rojhilata Navîn ji wê re cih nemaye û ji ber vê yekê amadekariyan dike ku koçî Lîbyayê bike da ku li Lîbyayê bîrên neftê desteser bike û li Ewropayê êrîşan pêk bîne. Her wiha tê gotin ku Serokê DAIŞ'ê Ebûbekir Bexdadî 100 endamên xwe ji niha ve şandiye Lîbyayê û ji bo hemû rêxistinê derbasî vî welatî bike amadekarî têne kirin. Li gor angaşteke din jî tê gotin ku DAIŞ tûşî şerê navxweyî bûye û piştî demekê wê Mûsil bêyî şer bikeve. Rêbaza dawî jî ew e ku Mûsil bi operasyoneke leşkerî ku amadekariyên wê têne kirin bê rizgarkirin."

### "Sînorê me Mûsil jî tê de heta Dîcle ye"

Fermandarê Eniya Başika Hemîd Efendî jî di nirxandina xwe ya ji bo BasNûçe'yê de anî ziman ku sedemê derengmayîna operasyona Mûsilê goncavnebûna mercên siyasî û leşkerî û helnewestîna DYA'yê ye û got: "DYA'ya ku dîktatorekî wek Saddam di 19 rojan de têkşkand, dikare di 3 roran de Mûsilê rizgar bike. Lê belê li gel vê yekê jî ger ku merc goncav bibin, ji bo rizgarkirina Mûsilê wê ji Hêzên Pêşmerge re ferman bê dayîn û em li benda wê fermanê ne." Efendî, destnîşan kir ku sînorê Kurdistanê Mûsil jî tê de heta peravê Robarê Dîcleyê ye û got: "Çi dibe bila bibe, em ê hemû axa Kurdistanê têxin bin kontrola xwe."

Ji alî din ve, li Navenda Perwerdehiya Leşkerî ya Hevpeymaniyê ya li Hewlêrê, ji bo şerê bajarî perwerdekirina 9 hezar Pêşmerge jî wek xebatên amadekariyên operasyona Mûsilê tê nirxandin. Wezîrê Parastinê Xalid Ubeydî jî di serdana xwe ya yekîneyên Artêşa Iraqê yên ku li Mexmûrê bi cih bûne de diyar kir ku wê operasyona Mûsilê zor be, lê belê bi beşdariya Hêzên Pêşmerge ew ê dikaribin di nîvê salê de operasyonê bidine destpêkirin.

Endamê Komîsyona Ewlehî û Parastinê ya Parlamena Iraqê Falih el Xezalî jî leşkerên tirk ên li başika wek 'leşkerên dagirker' bi nav kir û angaşt ku egerî heye piştî rizgarkirina Mûsilê ev leşkerên tirk bi şer ji Iraqê bêne derxistin. Xezalî got: "Milîşeyên Haşdî Şabî ji bo derxistina van leşkeran amade ne, lê belê biryara şer di însiyatîfa hikûmeta Iraqê de ye."

## Barzanî: Kurd dev ji mafên xwe bernadin

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, di serdana Nûnerê Taybet ê Iraqê yê Sekreterê Giştî yê Neteweyên Yekbûyî(NY) Jan Kubis û şandeya li gel wî ku ji bo lêkolînkirina rewşa herêmê û şert û mercên penaberên şer hatibûn RHK'ê de di derbarê babetên sereke yên di rojevê de axivî. Barzanî da zanîn ku gelê kurd, bi hemû hêz û derfetên xwe hewl daye ku li Iraqê, di çarçoveya pergala federatîf de demokrasî, aştî û aramiyê biparêze, lê belê ji bo vê yekê fersend hatine têkbirin û ji ber vê yekê jî wê kurd dev ji mafên xwe bernedin. Di vê serdana ku li Ofîsa Serokatiya Herêma Kurdistanê ya li Hewlêrê de xebatên peydakirina alîkariyên mirovî yên ji bo koçberên ku ji ber DAIŞ'ê reviyane û alîkariyên ku NY dikare bike jî hatin gotûbêjkirin. Nûnerê Taybet Jan Kubis jî di derbarê xebat û bernameyên NY yên ji bo çareserkirina qeyranên aborî û mirovî yên li Iraq û Kurdistanê hatine amadekirin de Barzanî agahdar kir.

## Mesrûr Barzanî:
## Wê referandûm bibe egera yekîtiya mala kurd



Rawêjkarê Encumena Asayîşa RHK'ê Mesrûr Barzanî di hevpeyvîna xwe ya bi têmaya referandûma serxwebûnê ya li gel Govara Gulan'ê de anî ziman ku ji bo ragihandina daxwaza gel dema guncav ne grîng e, bilêvkirina vê hincetê pir balkêş e, serxwebûna mafê herî rewa yê gelê kurd e û divê kurd çaverê nebin ku wê kesên din vî mafî bide wan. Mesrûr Barzanî referandûmê wek rêbaza herî baş a ragihandina daxwaza gelan destnîşan kir û got: "Referandûm dikare bibe egera yekgirtina mala kurd jî." Barzani anî ziman ku mafê serxwebûna Kurdistanê ji dest kurdan hatiye stendin, lê belê bi goncavbûna şert û mercan, divê gelê kurd fersenda bidestxistina vî mafê xwe baş bikar bîne. Barzanî xwest ku partiyên siyasî tenê ji bo berjewendiyên xwe tevnegerin, ji destkeftiyên neteweyî sûd wergirin û di derbarê pêwendiya referandûmê û qada navneteweyî de jî wiha got:

"Feraseta civaka navneteweyî ya di derbarê kurdan de guherî ye. Gellek dewlet li xwe mikûr tên ku kurd bûne mexdûrên neheqiyeke sîstematîk û dibêjin êdî wiha nameşe. Ger ku Bexda jî kurdan wek hevparê xwe nebîne, divê bi rîwangeyeke aştiyane nêzîkî veqetandina kurdan bibe."

Rawêjkarê Encûmena Asayîşa RHK'ê Mesrûr Barzanî di hevpeyvîna Ajansa Associated Press'ê de jî li gel hemû astengiyan serkeftina Pêşmerge wek 'mûcîze' nirxand û da zanîn ku berpirsyariyeke mezin a dinyayê heye ku piştgirî bide Pêşmerge. Barzanî serxwebûnê wek mafê sirûştî yê gelê kurd destnîşan kir û got: Tekez wê rojekî kurd jî wek gelên din serxwebûna xwe ragihîne."



## Prof. Dr. Azad Mehmed Emîn Naqşîbendî:

# Kurdistan û DYA'yê hevpeymanên giring in

Berendamên serokatiya DYA'yê di hilbijartinên de dest bi bangeşeyan kirin. Di bengeşeya namzetên Partiya Komarxwaz û Partiya Demokrat de piştevaniya kurdan bi dengekî bilind tê bihîstin. Namzetên Komarxwaz, Jeb Bush û Ted Cruz eşkere dikin ku ew ê di piştevaniya kurdan de berdewam bin. Li hêla din jî nam-zetên Demokrat Hillary Clinton û Martin O'Malley piştevaniya xwe ji kurdan re eşkere dikin û di bangeşeyên xwe de hevpeymaniya li gel kurdan bilind dinirxînin.

Mehmet Salih Batırhan

Çavê hemû cihanê li hilbijartinên serokatiya DYA'yê ne. Serokê niha yê Amerîkayê Barack Obama ji ber ku du caran weke Serok hatiye hilbijartin ni-kare bibe namzet. Namzetên Partiya Komarxwaz û Partiya Demokrat kar-nameyên xwe eşkere dikin û di hilbijartina pêşwext de derdikevin nava xelkê.

Namzetên Partiya Komarxwaz, Waliyê Floridayê yên kevn Jeb Bush û Senatorê Texasê Ted Cruz eşkere dikin ku ew ê di piştevaniya kurdan de berdewam bin. Li hêla din jî namzetên Partiya Demkrat Hillary Clinton û Martin O'Malley piştevaniya xwe ji kurdan re eşkere dikin û di bangeşeyên xwe de hevpeymaniya li gel kurdan bilind dinirxînin.

Akademîsyenê Zankoya Selahadînê Prof. Dr. Azad Mehmed Emîn Naqşîbendî ajandaya namzetên partiyên DYA'yê û danûstendinên DYA'yê û Kurdistanê ji BasNûçe'yê re şîrove kir. Prof. Naqşîbendî tekez kir ku her çend ajandeyeke taybet û helwesteke taybet a DYA'yê li hember serxwebûna Kurdistanê nehatibe eşkerekirin jî Kurdistan û DYA'yê hevpeymanên giring in.

**Amerîka ber bi hilbijartina serokatiyê, Kurdistan jî ber bi serxwebûnê ve diçe her wiha di hilbijartinên pêşwext de, endamên Partiya Komarxwaz eşkere dikin ku ew ê piştgiriya serxwebûna Kurdistanê bikin. Gelo di derbarê Kurdistanê de ajandayeke taybet a namzetên Komarxwaz heye?**

Serokatiya Amerîkayê tesîrê li her deverê dike. Dibe rojeva hemû cihanê. Em jî niha li benda hilbijartinên serokatiya Amerîkayê ne. Xelkê Amerîkayê jî li benda hilbijartina ye. Gelek arîşe û pirsgirêkên mezin niha hatine taloqkirin ji bo piştî hilbijartinê. Serxwebûna Kurdistanê jî yek ji wan meseleya ye. Meseleyeke aloz e û gelek giriftên wê hene. Nikarin tu biryaran werbigrin. Dema ku em tên ser ajandayên namzetên partiyan jî her kesek û ajandayeke xwe ya taybet heye. Ajandayên namzetan taybet in ew ne ajandayên partiya ne. Hin namzetên Parti-ya Komarxwaz piştgiriya xwe ji serxwbûna Kurdistanê re eşkere dikin. Partiya Komarxwaz ji mêjve ye piştgiriyê ji Kurdistanê re dike. Di prêsskonferansan de yekser piştgiriya xwe tînin ziman. Ji raya giştî ya kurdan re ji raya giştî ya Amerîkayê re piştevaniya xwe tînin ziman.

**Çima Partiya Komarxwaz an jî nemzetên serokatiyê piştevaniyê ji Kurdistanê re dikin? Kurdistana serbixwe ew ê çi tesîrê li polîtîkaya DYA'yê bike?**

Ew dizanin ku bihêzbûna kurdan di meslehet û berjewendiya Amerîkayê de ye. Îran weke hêzeke mezin li Rojhilata Navîn belav dibe. Îran gelekî bi hêz bûye û tesîra wê ya li herêmê êdî eşkereye. Li hêla din her çend Tirkiye hevpeymanê Amerîkayê jî be îro desthilateke ku piştgiriya DAIŞ'ê dike piştgiriya terorîzmê dike li ser Hikûmeta Tirkiyê. Cemaata DAIŞ û piştgiriya hikûmeta Tirkiyê ya li komên îslamî terorîzmê mezin dike. Ji Iraqê, Sûriyê, Lûbnanê, Yemenê, Lîbyayê bigrin heta Ewûpayê jî ew kom mezin dibin, belav dibin. Her wiha ew ê li Amerîkayê jî belav bibin. Ji ber vê yekê dema temaşeyî kurdan dikin di wê baw-eriyê dene ku kurd vê pêla îslamgeriya tûndrew li Iraqê rabigrin û li Rojhilata Navîn jî kêm bikin. Ez di wê baweriyê de me ji ber van egeran piştevaniya kur-dan dikin. Mimkûn e li ser rewşa kurdan ajandayên wan ê taybet hebin.

Ez dixwazim bêm ser polîtîka û karnameyên namzetên Partiya Demokatê. Egera wê yekê heye ku namzetên Partiya Demokratê jî yekser piştevaniya xwe jî serx-webûna Kurdistanê re rabigihînin?

Namzetên Partiya Komarxwaz rexne û giliyên wan li ser polîtîkayên Partiya Demkokrat hene û eşkere dikin ku Barack Obama serokê niha yê Amerîkayê ye û ji Partiya Demokrat e ne li siyaseta navxweyî ne jî li siyaseta derve pêşketin û berjewendiyên Amerîkayê parastiye. Namzetên Partiya Demokrat bêhtir di kar-nameyea xwe de cih dane polîtîayên navxweyî. Li gor wan, di serdema Obama de Amerîka li gelek deveran li hember Rûsya xwe bi paşve kişandiye. Weke mînak jî eşkere dikin ku Rûsya, Kirim û Ukraynayê kontrol dike. Her wiha piştgiriyeke yekser dide Îran û Beşar Esad û Obama li hember Rûsya şikest xwariye. Li hêla din radigihînîn ku ev rewşa heyî, ji ber siyaseta ne durist a Partiya Demokrat rûda ye. Şerê Amerîka û Efxanîstanê, Şerê Amerîka û Iraqê dî bîra wan deye. Ji ber wê yekê namzetên nû naxwazin beşdarî arîşe û aloziyên mezin ê Rojhilata Navîn bikin. Ew dixwazin li nav siyaseta navxweyî xwe bihêz bikin. Ji bo kurdan siyaseteke wan a zelal tuneye.

**Beriya bi çend hefteyan desteyeke bilind a Kurdistanê ku Fûad Hûsên Serokê Dîwana Serokatiyê RHK'ê jî cihê xwe di wê desteyê de girt serdana Washington kir. Her wiha em dizanin Hêmin Hewramî Nûnerê Peywendiyên Derve yê PDK'ê li Washingtonê yê. Dîplomasiya vê dema dawî tê çi wateyê?**

Pêdawîstiya Washingtonê bi Hewlêrê heye. Polîtîka û stratejiyên wan ê hevbeş li herêmê gelek in. Amerîka naxwaze herêm têkeve bin kontrola Îranê. Niha du be-reyên mezhebî hene. Bereya şîe heye û bereya sûnne heye û ev herdu alî jî şerê hevdu dikin. Dijberiya herdu aliyan bûye şerekî giştî. Bûye şerekî herêmê. Ber-jewendiya Kurdistanê jî di hevpeymaniya Washingtonê de heye. Herdu alî jî he-vpeymanên stratejîk in. Bi piştgiriya Amerîka Kurdistan dikare belavbûna polîtîkayên şîeyan rabigre.

Faktoreke din jî heye. Pêşmergeyên Kurdistanê şerekî serkeftî li hember DAIŞ'ê dikin. Amerîka serkêşiya hevpeymaniyê dike û hemahengiyeke baş bi rayedarên Kurdistanê re duristbû di şerê li dijî DAIŞ'ê de. Aramî û ewlehiya herêmê ji bo berjewendiya Amerîkayê û ji bo Kurdistanê jî giring e. Pêwîstiya Kurdistanê jî bi dewleteke weke Amerîka heye. Amerîka di parastina Kurdistanê de, di der-basbûna qeyranên heyî de piştevaniya Kurdistanê dike. Guman li ser wê yekê nîne ku Hewlêr û Washington du hevpeymanên giring in.

**Niha Rûsya jî li Rojhilata Navîn e û wisa xwuya dike ku ew ê li Rojhilata Navîn bi cih bibe. Her wiha piştî hilbijartinan dibe ku DYA'yê jî stratejiya xwe bi-guherîne?**

Dewletên mezin ên wek Amerîka zû bi zû stratejiya xwe naguherînin. Ez ne di wê baweriyê de me ku piştî hilbijartinê Amerîka siyaseta xwe biguherîne. Kêm an jî zêde niha Amerîka herêmê kontrol dike. Rewşa niha ya heyî di berjewendiyên Amerîkayê dene. Kengî ku berjewendî û stratejiya wan bikeve xeterê wê demê çi serokê ji Partiya Komarxwaz be, çi jî serokê ji Partiya Demokrat be ew ê dest bi guhertina stratejiya xwe bike û ew ê berjewendiyên xwe biparêzin. Niha dikarin rewşê kontrol bikin. Her wiha rikberiyê jî bi Rûsyayê re nakin. Berjewendiyên Amerîkayê li cem wan di ser hemû tiştî reye.

**Niha DYA'yê piştevaniya Mîhwera Sûnne dike, Rûsya jî piştevaniya Mîhwera Şîe dike û ew rikberî li dorûbera Kurdistanê gurr bûye. Kurdistan çawa dikare di rewşeke wisa de xaka xwe biparêze û bê teref be?**

Rast e. Du bereyên mezhebî niha li herêmê hene. Li Rojhilata Navîn weke du



zilhêzên mezin derdikevin holê. Bereya şîe bi serperiştiya Îranê ji Iraq, Sûriye, Yemen, Hizbûllah pêktê û gelekî bi hêz bûne. Bereya din jî ji Tirkiyê, Erebîstana Siûdî, Îmarat û Qeterê pêkte. Rûsya û Amerîka jî li gor berjewendiyên xwe piştevaniya aliyan dikin. Ev rast e. Kurdistan niha siyaseteke bi balans bi rêve dibe û nabe parçeyekî vî şerê mezhebî. Helbet ku li dorûbera mirov agir hebe û ew agir neyê vemirandin ew ê ew agir belav bibe. Heta niha Kurdistanê xwe ji agirê mezhebî parastiye. Di pêşerojê de ew ê rewşeke çawa derkeve holê diyar nî-ne. Em hêvî dikin ku ev balans bê parastin û şerê mezhebî derbasî nava Kur-distanê jî nebe.

**Xelkê Kurdistanê ew ê kengî herin ser sindoqa serxwebûnê? Dema rapirsîna serxwebûnê nêzîk e gelo? Egera wê yekê heye ku rapirsîn beriya hilbijartina DYA'yê pêk werin?**

-Kurdistan niha nikare ber bi serxwebûnê ve here. Ji ber ku gelek qeyranên Kurdistanê hene. Temaşe bikin. Qeyrana darayî heye. Qeyrana siyasî heye. Rû bi rûbûna şerê DAIŞ'ê heye. Di qonaxeke wisa de pêkanîna rapirsînê pirsgirêkan çareser nake. Ew ê bi tenê arîşeyan mezintir bike. Hewldanên giring hene ji bo serxwebûnê û divê Kurdistan serbixwe be. Dilê xelkê bi ser serxwebûnê ve ye. Lê belê divê beriya hemû tiştî jî qeyranên heyî çareser bibin. Eger ew qeyran mezin bibin destkeftiyên heyî jî ew ê têk biçin.

**Îran ji mêjve ye nerazîbûna xwe ya li hember serxwebûnê eşkere kiriye. Beriya bi çend rojan Cihgirê Serokwezîrê Tirkiyê Ömer Çelik jî eşkere kir ku ew bi awayekî erênî temaşeyî serbixwebûna Kurdistanê nakin. Çima dewletên ciran dijî serxwebûnê ne?**

Dewletên cîranên Kurdistanê duristbûna dewleteke kurdan weke xeter ji xwe re dibînin. Mînak li Swîsreyê sê pêkhate pêkve dijîn. Swîsre li sê goşeya Îtalya, Al-manya û Fransayê ye. Duristbûna Swîsreyê ji her sê dewletan re nebûye xeter e. Ji wan dewletên cîran re bûye weke cihekî giring. Danûstendinên her sê welatan bi Swîsreyê re gelekî baş in. Ez di wê baweriyê de me ku eger Kurdistan jî ava bibe ew ê ji dewletên cîran re baş be. Ew ê hem ji Tirkiyê re hem ji bo Îranê baş be. Lê di eslê xwe de ew dewlet hebûna kurdan qebûl nakin.

Divê kurd bên qebûlkirin, Sûriye, Iraq, Îran, Tirkiye li dijî kurdan li ser polîtîkayan digihên hevdû û hebûna kurdan destkeftiyên kurdan xeter dibînin. Lêbelê ez dikarim wê yekê eşkere bikim ku avabûna dewleteke kurdî ew ê ji bo van dewletên cîran nebe xeter. Ezmûna Herêma Kurdistanê li ber çava ye. Roje-kê jî Herêma Kurdistanê êrîşî xaka tu dewletan nekir. Yek carê jî gef li welatên cîran nexwar. Hemû pêkhate, hemû kêmnîneyên cuda li Kurdistanê pêkve dijîn.

**Em bên ser peywendiyên Bexda û Hewlêrê. Peywendiyên Bexda û Hewlêrê ber bi kuderê ve diherin? Gelo çima Serokwezîrê Iraqê Heyder Îbadî dibêje 'ez ê mûçeya Kurdistanê naşînim?'**

Arîşeyên Bexda û Hewlêrê gelek in. Ew arîşê bi polîtîkayên Iraqê re rû didin. Kurd û Bexda ji hev qetiyane. Ew nema dikarin bi hevre bijîn temaşe bike. Tu peywendiyên wan bi hevre nemane. Kurd jî mejbûr in çarenûsa xwe diyar bikin. Ew ê kurd li ser çarenûsa xwe kar bikin. Ev mafekî rewa yê gelê kurd e. Tu kes nikare rêgiriya vê yekê bike. Iraq, Hikûmeta Bexdayê hewldide rê li ber dewlet-bûna kurdan bigre û Iraqeke yekpare ferz bike. Heyder Îbadî jî vê yekê dike. Ev yek bi ser nakeve. Ev polîtîkayên wisa ew ê kurdan bêhtir ji Iraqê û Bexdayê dûr bixin. Nema dibe û ne mimkune ku Iraqeke yekgirtî piştî vî şerî dîsa durist bibe.

**Niha DAIŞ ji Kurdistanê hat derxistin û**

> "Pêdawîstiya Washingtonê bi Hewlêrê heye. Polîtîka û stratejiyên wan ê hevbeş li herêmê gelek in. Amerîka naxwaze herêm têkeve bin kontrola Îranê. Faktoreke din jî heye. Pêşmergeyên Kurdistanê şerekî serkeftî li hember DAIŞ'ê dikin. Amerî-ka serkêşiya hevpeymaniyê dike û hemahengiyeke baş bi rayedarên Kur-distanê re duristbû di şerê li dijî DAIŞ'ê de."

**Haşdî Şabî hewldide êrîşan bike? Haşdî Şabî çima arîşeyan derdixe?**

Haşdî Şabî ji komên milîşeyên şîe mezhep pêktê. Ew weke netewe ereb in. Lê be-lê erebên şîe mezheb in. Tayîfeya şîeyên Iraqê ne. Yekser bi ser Hikûmeta Bexdayê ve ne. Her wiha destêwerdana Îranê jî li ser wan heye. Ji komên Lîwayên Bedir û Qasim û gelek komên din peyda bûne. Bêguman ji bo Kurdista-nê xeter ne. Divê haya kurdan ji wan hebe. Hem ji bo siberoja Kurdistanê hem jî ji bo siberoja Iraqê ew komên Haşdî Şabî jî xeter ne. Divê serkirdeyên sereke vê yekê bibînin. DAIŞ çû niha Heşdî Şabî hat. Heşdî Şabî jî here ew ê komeke din were.

### Hewldanên pêkvegirêdana Efrîn û Kobanê

# Kembera erebi difeşkile





**Siwar Bedirxan**

Hêzên kurd yên ku êrişên El Nûsra, Ehrar el Şam, DAIŞ û komên din ên tûndrew pûçkirin, 'Kembera erebî' ya ku ji aliyê rejîma Baas a Hafiz Esad ve salên 1960'an hatibû pêk anîn hildiweşîne. Bi Kembera erebî bi armanca veqetandina herêmên kurdan şêniyên ereb di navbera gundên kurdan dihatin bicihkirin û kurd ji herêmê dihatin koçkirin. Bi vê mebestê erd û axa kurd ji kurdan dihat stendin û ji erebên ku ji çolê anîbûn dihat belavkirin û kurd li bajêrên Sûriyê hatin belavkirin û mafên wan yên hemwelatiyê ji destê wan hat derxistin.

Hêzên kurd ku Girêspî serê meha Tîrmihê ji DAIŞ'ê paqiş kirin di navbera Qamişlo û Kobanê jî korîdorek



Sinem Mihemed

Hêzên kurd ku niha ji DYA û Rûsyayê piştgiriyê dibînin dest bi dawîkirina ambargoya siyasî û hilweşandina 'Kembera erebî ya rejîma Baasê kirin. HSD ku li bakûr rojhilatê Efrînê operasyonan li dar xist, dorpêça li ser Efrînê jî dişkê ne.

vekiribûn û rê kontrol kiribûn. Li herêma Efrînê jî bi piştgiriya esmanî ya Rûsyayê ji bo şikandina dorpêça El Nûsra, DAIŞ û Ehrar el Şamê ya li ser Efrînê dest bi operasyonê kir. Hêzên Sûriya Demokratîk (HSD) ku pêşengiya wê YPG dike ji bo operasyona paqijkirina Minbîç û Ezazê ku dikevin di navbera Kobanê û Efrînê kir.

Wezîrê Parastinê yê Kantona Efrînê Îbrahîm Evdo eşkere kir ku hêzên kurd li ber deriyê Ezazê ne û tê ragihandin ku balafirên Hêzên Esmanî yên Rûsyayê ji bo piştgiriya hêzên kurd çeperên Ehrar el Şam û El Nûsrayê bombebaran dikin.

Ji hêla din Rêveberiya Xweser a Rojava li Moskovayê nûnertî vekir. Hêzên navneteweyî yên ku ji civîna Cenevre III'yan ku di 29 Çileyê pêk hatibû, destvala vegeriyan, berê herkesê da 52. Konferansa Ewlekariyê ya Munchenê. Di konferansê de mijarên sereke rewşa koçberan, rêyên çareseriya siyasî ji bo qeyrana Sûriyê ne. Wezîrê Karên Derve yê DYA'yê John Kerry li Munchenê axivî û eşkere kir ku alî li ser agirbesta Sûriyê li hev kirine. Wezîrê Karên Derve yê Rûsyayê Sergey Lavrov jî diyar kir ku bomberabarana Rûsyayê ya li Sûriyê wê bidome.

**Alî agirbestê radigîhinin?**

Hat zanîn ku aliyên bi pêşengiya Neteweyên Yekgirtî ji hevdîtinên Cenevreyê encamek bidest ne xistin, dê li bajarê Munchenê ya Elmanyayê li hev kombibin û agirbestekê rabigihînin. Koma Piştgiriya Sûriyê ya Navneteweyî ku li Munchenê kom bûn, li ser dabînkirina agirbestê li hev kirin. Wezîrê Karên Derve yê DYA'yê ragihand ku wan li ser dabînkirina agirbestekê ku di nava hefteyekê de bê ragihandin li hev kirin e. Li gor rêkeftinê endamên komê ji bo armanca alîkariyên mirovî, wê di qadê de bi NY'ê re di nava kordînasyonê de bin û wê hemû hêza xwe ji bo vê bikar bînin. Hat ragihandin ku El Nûsra, DAIŞ û rêxistinên din ên selefî ne di nava rêkeftinê de ne.

Wezîrê Karên Derve yê Rûsyayê Sergey Lavrov jî got ku êrişên Rûsyayê yên li dijî DAIŞ ûEl Nûsra'yê bidomin û diyar kir ku divê hevdîtinên aşitiyê di navbera rejîm û opozîsyên de di demek kurt destpê bikin.

**Pêngava HSD'ê ya Efrînê**

Hat zanîn ku HSD'ê ku bi piştgiriya hêzên hevpeyman a ku pêşengiya wê DYA dike li Sûriyê li hember DAIŞ'ê pêşve diçe, li Efrîn û bakûrê Helebê li dijî e-El Nûsra û Ehrar el Şamê dest bi operasyonê kir û di operasyonê de piştgiriya Rûsyayê jî wergirt û nêzikî Ezazê bûye. Çavkaniyên li herêmê û Çavderiya Mafên Mirovan a ku Navenda wê li Londonê ye radigihînin ku di navbera El Nûsra û HSD'ê de pevçûnên dijwar rû didin. Ji aliyê din bajarokê Mennah û baregeha leşkerî ya li herêmê ket bin kontrola hêzên kurd. Serokê Çavdêriya Mafên Mirovan a Sûriyê Rami Abdûlrahman ji Reuters'ê re axivî û diyar kir ku opozîsyonê baregeha dawîn a di destê xwe de jî winda kir û baregeh niha di destê hêzên kurd de ye. Reuters'ê jî ragihand ku hêzên kurd bi piştgiriya balafirên rûsî pêşve diçe.

**"HSD ber bi Ezazê ve diçe"**

Wezîrê Parastinê yê Efrînê Evdo Îbrahîm ji BasNûçe'yê re got ku operasyona hêzên kurd bi awayekî serkeftî didome. Evdo Îbrahîm destnîşan kir ku El Nûsra û Ehrar el Şam zilmê li gelê gelê herêmê dikin û ev zilm wê bi operasyonên hêzên kurd bidawî bibe. Îbrahîm wiha axivî: "Di serî de Efrîn ji çeteyên ku gelê herêmê dorpêç kirin e wê ji hemû herêmê bên paqijkirin. Gelê herêmê ji hebûna YPG kêfxweş e û dixwazin ji bin zextên çeteyan derbikevin." Îbrahîm destnîşan kir ku balafirên Rûsyayê jî piştgiriyê didin wan û ew ji vê kêfxweşin û ev tişt gotin: "Em ji her piştgiriya ji bo derxistina komên selefî ji xaka Rojava û Sûriyê kêfxweş dibin û girîng dibînin. Rûsya hevpeymanê me yê girîng e, bi operasyonên kordîneyî hêzên kurd ber bi Ezazê ve pêşve diçin."

**"Koçber xwe dispêrin Efrînê"**

Ji hêla din pêla koçberan ya ji Helebê ku ji ber operasyonên rejîm û Rûsyayê redivin didome. Hat zanîn ku koçber li herêmê Şehba, nêzî Efrînê hatine bicih kirin û ji aliyê Rêveberiya Efrînê ve hatine pêşwazîkirin û hejmara wan her diçe zêde dibe. Evdo Îbrahîm balkişand ser rewşa van koçberan jî û got ku koçer di malên gel de hatine bicihkirin û ew daxwaza alîkariyê ji rêxistinên sivîl ên navneteweyî dikin.



**Di navbera DYA – Tirkiyê de krîza PYD'ê**

Krîza di navbera DYA û Tirkiyê ku ji ber PYD'ê derketibû didome. Tirkiye PYD'ê weke baskê PKK'ê yê Sûriyê binav dike û dixwaze weke 'rêxistinek terorî' bê qebûlkirin. Lêbelê DYA'yê PYD û YPG weke rêxistinên terorî binav nake. Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan roja çarşemê daxuyaniyekê got, "PYD jî û YPG jî rêxistinên terorê ne... Ey Amerîka! Min çend caran ji we re got. Hûn bi me re ne, an jî bi rêxistinên terorê PYD û YPG'ê re ne?" û bertek nîşanî DYA û serdana nûnerê Obama yê serdana Rojava kiribû da. Li aliyê din Cîgirê Berdevkê Wezareta Karên Derve yê DYA'yê Mark Toner ragihand ku di navbera PKK û YPG'ê de cudahî heye û wiha axivî: "PKK rêxistinek terorî ye, lê em di derbarê YPG 'ê de bi Tirkiyê re ne di heman fikrê de ne."

**Rêveberiya Xweser a Rojava li Moskovayê nûnertî vekir**

Krîza di navbera Tirkiye û DYA'yê a di mijara PYD'ê didome û ji aliyê din Rêveberiya Xweser a Rojava 10'ê Sibatê li Moskovayê nûnertî vekir. Di vekirinê de ji bilî rayedarên Rojava gelek rayedarên Rûsyayê jî beşdar bûn. Berpirsyara Rêveberiyên Xweser Sînem Mihemed di vekirina nûnertiyê de axaftinek kir û got, "Îro ji bo Rêveberiyên Xweser ku ev 3 sal li pey xwe hişt, rojeke dîrokî ye. Nûnertiya ku li paytexta dewlete di nava çend dewletên sereke de cih digire girîngiyê zêdetir dike. Ev jî tê wateya qebûlkirina projeya Xweseriya Demokratîk. Ev proje ji ber ku nirxên gerdûnî yên weke biratiya gelan, wekhevî û demokrasiyê di nava xwe de digire û ji bo tevahiya Sûriyê û Rojhilata Navîn mînaka çareseriyê ye. Nûnertiya ku me li Moskovayê vekir ji bo pêwendiyên derveyî welat gavek e." Ji hêla din hat zanîn ku Hevserokê PYD'ê li Rûsyayê ye û bi Cîgirê Wezîrê Karên Derve Mihail Bogdanov re civiya ye.

**"PYD de di çareserkirina qeyrana Sûriyê de hewlên ciddî dide"**

Sehanok Dibo Endamê Komîsyona Pêwendiyên Derve yê PYD'ê di derbarê krîza PYD'ê ya di navbera Tirkiye û DYA'yê de ji BasNûçe'yê re axivî û got ku PYD û Rêveberiya Rojava aliyekî qeyrana Sûriyê ne û ji bo çareserkirina vê qeyranê xwedî rol e. Dibo eşkere kir ku PYD'ê hem leşkerî hem jî siyasî serkeftin bidest xistine û wiha axivî: "PYD bi siyasete serkeftî îro ji aliyê hemû hêzên cîhanê ve tê qebûlkirin. DYA jî Rûsya jî PYD'ê girîng dibînin. Ji bo çareserkirina qeyrana Sûriyê du faktor pêwîstin. Faktora ewilî serkeftinên leşkerî û derxististina komên selefî ji Sûriyê. Ya din jî faktora siyasî ye. Divê piştgiriya siyasî ya ku ji bo komên selefî tê dayîn bê birîn. PYD hem bi serkeftinên leşkerî û hem jî bi serkeftinên xwe yên siyasî nîşan da ku di çareserkirina qeyrana Sûriyê de cidî ye.

**"Planên Tirkiye û Erebîstana Siûdiyê pêk nehatin"**

Her wiha Dibo ragihand ku helwesta Tirkiyê ya li dij PYD'ê wê zirarê bide Tirkiyê jî got ku Erebîstana Siûdî û Tirkiye ji destpêka qeyrana Sûriyê û vir ve ji bo jiholêrakirina destkeftiyên kurdan komên tûndrew bi ser kurdan de dişînin. Dibo destnîşan kir ku Riyad û Enqere polîtîkaya bi tenê hiştinê kurdan dimeşînin lê raya giştî ya navneteweyî û hêzên navneteweyî PYD'ê weke hevpeymanên girîng dibînin. Dibo diyar kir ku bi berxwedana Kobanê piştgiriya ji bo kurdan zêde bû û ev tişt anîn ziman: "Berxwedana Kobanê û serkeftinên leşkerî planên hin hêzan vala derxistin. Di serî de Tirkiye, Qeter û Erebîstana Siûdî hene. Suûriye û Rojava wê radestî rêxistinên tundrew bikirana. Serkeftinên YPG û PYD'ê planên û stratejiyên van hêzan vala derxistin."

**"Em bi Rûsyayê re hevpeyman in"**

Dibo di derbarê Nûnertiya Rêveberiya Rojava ya Moskovayê jî de got ku rayedarên Rojava di civîna Cenevreyê de rastî polîtîkaya tenê hiştinê hatin û lê belê di civîna Cenevreyê de civînên piştî hingê de nebûna PYD'ê ya li civînan hat dîtin. Dibo eşkere kir ku encama civîna Cenevreyê jî weke yên din bû û hêzên cîhanî bi PYD'ê re ji bo ku ew jî rûne ser maseyê lihev kirine. Dibo ragihand ku ji bilî Moskovayê li DYA'yê û hin bajarên Ewropayê jî wê nûnertiyan vekin û wiiha pê de çû: "Ji berê de bi Rûsyayê re hevdîtinên me hebûn. Piştî xistina balafira Rûsyayê ji aliyê Tirkiyê ve, pêwendiyên me vegûherîn awayekî stratejîk. Niha em hevpeyman in. Me li Moskovayê nunertiya yekem vekir. Li DYA û YE'yê jî di demek nêzde wê nûnertî bên vekirin."

### Serekê Înstîtutê Ziwan û Kulturê Kirmancî Lerzan Jandîl:

# Kurdkî yew parçe ya, zazakî zî lehçeyê kurdkî yê

İsmet Aygün

Dewletê rewna ra lehçeya kurdkî zazakî ser o kay û komployan virazena. Armanc nê kayan betalkerdiş o. Kurdkî yew parçe ya, kirmanckî (zazakî) û yê bînî zî lehçeyê kurdkî yê.

Serekê Înstîtutê Ziwan û Kulturê Kirmancî / ÎKK Lerzan Jandîl wano; "Ma pêro zanîme polîtîkaya dewleta Tirkî her beşê ciwîyene de eynî ya: Parçe bike, hukim bike. Na derheq de kî karê dewleta Tirkî nêvurîyo. Seba ke kirmancan, kirdan, dimilîyan, kurdan bikero parçe, parçeyan tayêna bikero qij, dest ra çi êno, kena. Naca de ez bi xo problem nêvînena."

**Şima şênê Înstîtutê Ziwan û Kulturê Kirmancî (Zaza) ma rê bidê naskerdene?**

Roja 15.11.2000'î de nêzdîye 20 kesî amayî pêser û 18.12.2000'î de seba avakerdişê Înstîtutê Ziwan û Kulturê Kirmancî (zazakî) e. V. muracatê mekemeyî kerd û Înstîtut 20.11.2001 de hetê mekemeyî ra dosyaya komelan de amê qeyd kerdene û nîya kî bî fermî. Hetanî ewro ma gelê karî kerdî. Zê panelî, konferensî, semînerî, kursê zonî, fîraznayena şahîyanê kulturî û ro-janê fîrazan, roja zonê maye. Xêca nînan çerçeweyê "Projekta Materîyalê musayişî yo dizonkî" teba Yekmale hetanî nika ma, Xizna çekuyan I, II, III, IV; kermo çimvêşan, Hewnê Şîlane, Beqiqo ceresun Zoto, pêro pîya 8 pirtukê domanan vetî. Ancîya ma avakerdena halêndê do-manan "Pîya" de, seba hetkarîya domananê Şengal û Kobanê de ca girewt. Û nê karê ma de-wam kenê.

**Zazayê ke dîyaspora de, zê Berlîn de ciwîyînê, ciwîyena rojane de problemê nînan çik ê?**

Problemê kirmancan angorê dewletanê Ewropa cîya cîya rê. Lê sedemo tewer girs û taybetî kirmancî bi xo yê û xo ra na mesela Tirkîye de kî cîya nîya. Re zonê xo, re kulturê xo wayir nêvejînê, domananê xo bi kirmanckî, bi kulturê kirmancan pîl nêkenê. Lê têkilîya ma zafêrî kirmancanê ke re zon û kulturê xo wayir vejînê, ya kî wazenê wayir bivejîyê, est a. Ma nê kirmancan konferensanê xo de, şandanê xo de, semîneranê xo de vînenîme. Lê eleqaya generasîyonê verênî, yanê kalanê ma handê çîn a. Çike tawo ke generasîyono verên amê bî naca, hem zafêrîya nê generasîyonî wayirê heşêde neteweyî nêbîye, hem kî kar û barê xo Ewropa de ya kî dezgeyanê Ewropa de bi hetkarîya tercumananê tirkî viraştêne ya kî dêne viraştene. No kî Ewropa de kî bîyêne sebebê domînant bîyena zonê tirkî. Domînansê tirkî hetanî seranê 90'î dewam kerd. Lê kaleka naye de taybetîye kî pêynîya seranê 90'î ra dime eleqaya xort û azeban seba zon û kulturê ma bîye zêde û roj bi roj kî bena zêde.

**Şima zî zanê ziwanê kirdkî hêdî bêro vînî, şima hemberê nayê se kenê?**

Ma hem zê Înstîtutî û hem kî zê kesan, endemanê Înstîtutî bi kar û gureyê xo duştê na vîndî bîyene de vejîme. Karê Înstîtutî mi bi kilmîye cor vatî. Karê endemanê ma kî se ke ti kî zanena, hevalên ma Munzur Çem, Îsmet Sîwregî, Özgür Bariş, Çeko, Îbrahîm, Wusênê Gestemerde yanê bi kilmîye her kes hetê xo ra bi pirtukanê xo, bi nivisanê xo, bi şîîranê xo, bi zanayişê xo, qaso ke cira êno, duştê na vînîdî bîyene de vindenê.

**Şima hewldanê dewlatê ser kirdkî senî nirxnenê?**

Ma pêro zanîme polîtîkaya dewleta Tirkî her beşê ciwîyene de eynî ya: Parçe bike, hukim bike. Na derheq de kî karê dewleta Tirkî nêvurîyo. Seba ke kirmancan, kirdan, dimilîyan, kurdan bikero parçe, parçeyan tayêna bikero qij, dest ra çi êno, kena. Naca de ez bi xo problem nêvînena. Çike ez zana, ke na polîtîkaya delwt a. Lê çîyo tewr giran û zamet o wo, ke zaf kesê ma kî bi zanayene, ya kî nezan beno cûyê destê dewlete.

**Problemê standard kerdena ziwanê kirdkî çik ê?**

Seba ke mordem problemanê standard kerdene bivîno, gere mordem bizano standard ker-dene se virazîna. Karê standardî angorê Einar Haugenî modem gere verde ju korpusplanêde zonî bivirazo û pêyco kî statusê bidêro nê zonî û çar merhaleyê korpusplanî est ê.

1- Weçînitena normî (sélection)

1.1- Seba weçînitena normê gere qerarêde raşt bêro dayene û gere no xizmeta armancanên netewî bikero, gor armancanê nasîyonalîstan bo

1.2- No norm nêno afernayen û newe ra nêno viraştene. No norm êno weçînitene, seba ke o xo ra weş o, seba nê kî, hetê zafêrîye ra êno qebul kerdene.

2- Kodîfîze kerdene (codification)

2.1- Plankerdena zonî (korpusplan) gere polîtîkaya zonî bêro plan kerdene.

zê Japonya, Fînland, Tirkîye, Îsraîlî û Norveçkî gelê balkêş a. Mordem şîkîno cira dersan bigêro.

2.2- Gere no zon hacêtê komunîkasîyonêde serherêmî bo.

2.3- Varîtetê niviskî gere bêrê sade/asan kerdene

2.4- Gere mîyanê zonê qesê kerdene û zonê niviskî de astengê girsî çînê bê

2.5- Gere quralê gramatîkî bêrê ronîştene dayene.

2.6- Gere ortografîyêde asan bêro qebul kerdene.

3- Ravêr berdene/avakerdene (élaboration)

3.1- Leksîkolojî/termînolojî: Viraştena terman

3.2- Çekuyê derekeyî bi girewtena cekuyanê derekeyan/xerîban

3.3-Dên çekuyî

3.5-Dên dewr kerdene

3.6-Dên aferanayene

4- Re kar ardene/xebatneyene (cultivation)

4.1- Zonê elîte bîyene

4.2- Perwerde kerdene de, îdare, huquq, teknîk, bi kilmîye her beşê ciwîyene de, gurênayena nê normî.

Ma gelo ma de karê standarî nîya êno kerdene? Nê qet alaqaya xo çîna. Karê standardî tenya zê leksîkolojî, zê hemmana çekuyan ra weçînitena hu çekuye êno famkerdene.




"Ma pêro zanîme polîtîkaya dewleta Tirkî her beşê ciwîyene de eynî ya: Parçe bike, hukim bike. Na derheq de kî karê dewleta Tirkî nêvurîyo. Seba ke kirmancan, kirdan, dimilîyan, kurdan bikero parçe, parçeyan tayêna bikero qij, dest ra çi êno, kena. Naca de ez bi xo problem nêvînena."

## Lerzan Jandîl kam o?

Ez 1958'an de dewa Gimgimî Xelefan de ama dinya. Mi mektebo verên dewa xo û Mêrdîn de, o mîyanên Gimgim de û Mektebê Mualimîye kî Konya Akşehîr de wend. Mi hewt serî malimîye kerde û ez sera 1986'an de ama Almanya û o taw ra nat Almanya de ciwîna. Ez 1987'an ra nat kirmancan ser ro (zon-kultur-dîn-ûêb.) xebetîna. 1990'an ra nat kursanê kirmanckî dana. Hetanî nika rojnameyanê zê Azadî, Azadîya Welat, Yeni Özgür Politika, Newede Dêrsimî de, ancîya kovaranê zê Rewşen, Zend, Lêkolîn û Vate de ni-visna. Mi înîsîyatîfê destcikerdişê grupa Vateyî de kî ca girewt û hetanî sera 2008'î na grubê de xebetîya. Ancîya ez avakerdoxanê komelanê zê ÎZK, ÎKK, Yekmal û herwa.



Cizîra ku beriya şer şêniya wê 120 hezarî zêde bû, niha bajarek rûxiyayî ye û li tevahiya navçeyê tenê nêzîkî 10 hezar kes mane. Bîlançoya ziyana navçeyê hê nehatiye destnîşankirin û niha jî ne diyar e ku wê Cizîr çawa birînên xwe bipêçe û veguhere rewşa xwe ya berî şer.



Li Cizîrê, taybet li Taxên Cûdî, Nûr û Sûrê şer û pevçûn pêk hatin. Li Taxa Cûdiyê, di jêrzemînên 3 avahiyan de bi giştî 138 kes asê mane. Heta niha ji van 3 bodrûman 115 cenaze hatin derxistin û birin Nexweşxaneya Dewletê ya Cizîrê. Ji bilî kuştina kesên bodrûman, tê gotin ku li Cizîrê ji 45 kesên sivîl jî hatine kuştin.



Li gor agahiyên dawî yên 31'ê Çileyê yên ji 31 kesên ku di avahiya jimare 23 ya Kuça Bostancı ya Taxa Cûdiyê hatibû wergirtin, qatên jor ên vê avahiyê hemû rûxiyabûn û ji 31 kesên ku di bodrûma wê de asê mabûn 7 kesan jiyana xwe ji dest dabûn û 15 kes jî birîndar bûn. Di bodrûma dûyem a Kuça Narîn de 10 mirî, 52 jî birîndar bi giştî 62 kes hebûn. Û di bodrûma sêyem a Taxa Sûrê de jî 22 kes mirî bi giştî 45 kes hebûn. Ji 110 cenazeyên ku rakiribûn nexweşwaneyê, 7 jê arasteyî Mêrdînê, 28 jê Rihayê, 36 jê Silopî û 13 jê jî Şirnexê kirin. Nayê zanin ku li Nexweşxaneya Cizî cenaze mane yan na. Hate ragihandin ku ji 45 sivîlên ku di şer de hatin kuştin 3 jê bebikên jinên dûcanî yên ku hê nehatibûn dinyayê ne. Bebikê 3 mehî Mîray û 2 bebikên yek jê 7 mehî û yek jî 8 mehî, sê bebikên din jî di pevçûnên li Cizîrê de hatibûn kuştin.



# Di dorpeçê de 460 sivîl hatin kuştin

Rihan Roj / Têkoşîn Kew

HDP, bi daxuyaniyekê binpêkirinên mafên mirovan yên li Bakurê Kurdîstanê ji raya giştî re ragihand. Di daxuyaniya ku ji aliyê Maseya Enformasyonê ya HDP'ê ve hate dayîn de tê gotin ku ji meha Tir-meha sala çûyî heta niha, li Bakurê Kurdîstanê 84 zarok û 79 jin, bi giştî 460 sivîl hatine kuştin. Di qedexeyên navçeya Sûra Amedê yên ku ji dû mehan zêdetirin didomin de 26, di yên Cizîra Şirnexê de jî di 6 mehan de 112 kesen sivîl hatine kuştin. Serokê Şaxa Amedê ya Komeleya Mafê Mirovan (İHD) Raci Bilici jî di derbarê babetê de ji BasNûçe'yê re got ku di van bûyerên ku diqewimin de mafên mi-rovan ên bingehîn têne binpêkirin. Bilici da zanîn ku li Navçeya Sûrê, 70 roj in qedexeya derketina derve didome û her roj binpêkirinên mafên mîrovan zêde dibin. Bilici diyar kir ku ji roja ku qedexe destpêkirine heta niha, gelek mirovên sivîl hatine kuştin, ji ber zext û zora dewletê gelek mirovan ji bêçarî ji Sûrê koççkirine. Bilici destnîşan kir ku yên ji malên xwe derneketine jî bi zorê hatine derxis-tin, malên wan hatine rûxandin û wiha got: "Mudaxeleya dawî pir tûnd û dijwar bû û ne li gor tu qanûnan bû. Mudaxele bi kêfî, bi plan û sîstematîk tê kirin. Bi vi awayî peyama 'Ger hûn maf û sta-tuya xwe bixwazin, berê me çawa gundên we xerab kir û şewitandin, îro jî em ê bajarên we xerab bikin û bişewitînin' tê dayîn." Bilici diyar kir ku ji sedî 80 navçeya Sûrê hatiye talankirin û ji bilî endamê YDG-H'ê û hêzên dewletê, 40 kesên sivîl hatine kuştin, lê belê hejmarên ku ji her dû aliyan têne dayîn jî pir zêde ye." Bilici anî ziman ku bi kuştinan, pêşî mafê jiyanê yê mirovan ji destê wan hatiye girtin û piştre jî mafê xwarin, vexwarin, perwerdehî û tenduristiyê hatiye astengkirin. Bilici diyar kir ku ji 70 rojan zêdetir e qedexe didomin, ji ber vê yekê jiyan rawestiyaye û wiha pêde çû: "Bi awayekî sîstematîk bi van operasyonan xwestin ku tunekirinê pêkbînin. Her wiha xwestin ku tu kes nikaribe xwedî li mafê xwe derkeve. Ji tûndiya ku li Sûrê tê pêkanîn dijwartir, li Cizîrê tê pêkanîn. Dewletê, wargehên wek; Cizîr û Sûrê ku ji bo kurdan girîng û stratejîk in diyar kir û xwest ku gel li van deran serê xwe bilind neke û bi awayekî hov li Cizîrê bi dehan kesan li ber çavên me şewitandin"

### Hêzên navnetewî destwerdana Tirkiyeyê nakin

Serokê Şaxa Amedê ya İHD'ê Raci Bilici destnîşan kir ku ji bo binpêkirina mafên gelê Sûr û Cizîrê, wan di qada navnetewî de jî xebatan pêkanîne û wiha dom kir: "Ji Yekitiya Ewroyê (YE), Netewên Yekbûyî (NY) û ji hemû balyozxaneyên dewletên mezin ên li Tirkiyeyê re, roj bi roj, bi delîlan me agahiyan şandin. Di hemû peymanên navnetewî yên girîng de, mafê jiyanê parastî ye û divê tu kes nikaribe van mafên parastî binpê bike.




Ömer Önen


Raci Bilici

Lê mixabin ew rêxistinên navnetewî, ji bo berjewendiyên welatên xwe vî şerê ku li vê derê pêk tê piştguh dikin. Ger ku bixwestina, bi vîneke xurt, dikaribûn pêşî li van kuştinan bigirtina." Bilici destnîşan kir ku Tirkiye Peymana Cenevreyê ya hevbeş binpê dike û wiha domkir: "Di peymanê de aşkere tê gotin ku kî dibe bila bibe, dibe ku di nava dû welatan de an jî di nav weletek de di navbera rêxistinan de şer hebe, divê birîndar an jî kesên ku wek dîl hatine girtin li gor peymanê bêne tedawîkirin û neyên îşkencekirin. Yên ku endamê rêxistinê bin an jî sûcdar bin jî, piştî tedawiyê dikarin bêne darizandin."

Bilici diyar kir ku di operasyonên dawî de Tirkiye tu protokolên navnetewî nedaye ber çavan û hemûyan binpê kirî ye. Bilici rave kir ku ji bo 4 kesên birîndar Dadgeha Mafê Mirovan a Ewropayê (DMME) biryara tedbîrê daye, lê belê Tirkiyeyê vê biryarê jî guhdar nekiriye û got: "Dewletan çavên xwe ji vê komkujiya ku pêk hatiye re girtine û hemû bûne hevparên vê komkujiyê. Ger ku li ser vî şerî rawestiyana, dikarîbûn bi hinek kiryaran bi Tirkiyeyê gavan bidana avêtin. Em nikarin rasterast serî li DMME'ê bidin, lê piştî serdana Dadgeha Destûrê ya Tirkiyeyê em dikarin serî lê bidin û ev yek jî pêvajoya serdanê dirêj dike."

### "Divê sûcdar bêne darizandin"

Hevserokê HDP'ê yê Amedê Ömer Önen jî şerê li Bakurê Kurdistanên wek siyaseta şer a konsepta derbê ya şerê li dij gelê kurd tê meşandin bi nav kir û got: "Aliyek dixwaze bi şêweyên tûndrev li dijî demokrasiyê bisekine û dixwaze Tirkiyeyê wisa birêve bibe. Li hember vê jî aliyê din bi rêbazên aşti-yane, demokratîk û pêkvejiyanê dixwaz e mesele bê çareserkirin. Şer, şerê demokrasiyê, aşitiyê û we-latek demokratîk e, lê ev xwestek rastî tûndî, kuştin û komkujiyê tê. Desthilatdarên niha herî zêde mi-rov, ajal û xwezayê dikujin û dîrokê tune dikin."

Önen da zanîn ku navçeya Sûrê di bin banê UNESCO'yê de wek mîrateyên çandê hatibû pejirandin, lê belê niha tê rûxandin û li hember mirovahiyê û dîrokê tawanek mezin tê kirin. Önen wiha dom kir: "Divê ev sûcdar bêne darizandin. Ev gel aştî û biratiya gelan dixwaze. Ji vê yekê birûmettir tiştek tune ye, lê belê mirov ji bo vê têne kuştin. Mamoste Ayşe û akademîsyenên daxuyaniya li dijî şer îmze kir-ibûn, ji kar hatin dûrxistin. Pêwîst e em van tiştan bibînin."

Önen erkên dewletan ên parastina civakan bibîr anî û got: "Niha gelê û zarokên me têne kuştin, çanda me tê tunekirin. Di definkirina Mahmut Bulak'ê 16 salî de hevalên wî diruşmên 'Ji aşitiyê re êdî bese, dest bi şer bikin' diqêriyan. Êdî gel şer dixwaze. Divê em siyasetmedar jî vê yekê bînin ber çavên xwe. Wisa nebe em ê ji hev dûr bikevin. Hîn ku em aşitiyê û pêkvejiyanê diparêzin, divê ev fersend têk neçe. Dewlet divê maf û daxwazên gel bi aştî û demokrasiyê bide."

### "Dorpêç polîtîkayek nû ye, rê li siyasetê digre"

Önen, amaje pê kir ku ji bo bûyerên ku li Cizîrê diqewimin, divê siyasetmedar û hemû Tirkiye rabe ser piyan û dom kir: "Di sedsala 21. de hovitiya ku li Cizîrê pêk hatiye nayê qebûlkirin. Kesên ku ji bo xwe biparêzin ketin bodruman, bi benzînê hatin şewitandin. Ew komkujiyên ku li Cizîrê pêk tên, ji bo siberoja Tirkiyeyê û demokrasiya Tirkiyeyê şerm e."

Önen, li Tirkiyeyê pirsgirêka gelê kurd wek pirsgirêkek siyasi binav kir û anî ziman ku divê ne bi şer û pevçûnan, bi diyalog û muzakereyan bê çareserkirin. Önen bang li partî, rêxistin û hemû aliyên demo-kratîk kir ku li hev bicivin, ji bo vê pirsgirêkê niqaş bikin û got: "Hemû kes muxatabên çareseriya vê pirsgirêkê ne. Qedexeya derketina kolanan polîtîkaya dewletê ya nû ye û rê li siyasetê digire. Di pey-mana Dolmabahçeyê de xwestekên ji bo demokrasiyê hebûn û dewlet li ser yek al, yek dewlet û yek neteweyê sekinî. Em piştevanên demokrasiya pirrengî ne. Divê em li dijî qedexeya derketina kolanan bin û rê li polîtikayên nû vekin. Xendek jî ne çare ye, qedexeya derketina derve û operasyon jî ne çare ye."





# Siyaseta kurd ya bê ciwan

Tekoşîn Çelîk

Di tevgera siyasî ya li Bakur de PKK bi girîngîdayîna jin û ciwanan ji partî û rêxistinên din diguhere. Li gel vê yekê jî PSK, piştî biryar da ku ji dev ji îlegalîteyê berde û di qada legal de dest bi siyasetê bike, di bernameya xwe de girîngiyeke mezin dide jin û ciwanan û ciwan hewl didin ku bi destpêkirina meşandina siyaseta legal re di nav xebatên PSK'ê de cih bigirin.

Di derbarê vê babetê de berpirsên ciwanan ên PSK, PDK-Bakur, PAKURD, PAK û HAK-PAR'ê di derbarê rewşa ciwanan û xebatên wan ên vê qadê de bersiv dan pirsên BasNûçe'yê. Li ser navê Komisyona Ciwanan a PSK'ê Rojhat Kızıl ragihand ku ew dixwazin ku ciwanên kurd li ser xeteke neteweyî di nav PSK'ê de dest bi çalakî û xebatên geşedantina tekoşîneke demokratîk, çandî, hunerî, wêjeyî û dîrokî bikin û van xebatan bi rêxistinî pêk bînin. Kızıl got: "Em dixwazin ku ciwanên Kurdistanê li ser xeta neteweyî û bi hişyariya serxwebûnî di rêxistina me de cih bigrin û em nifşekî nû ji bo rêveberiya xwe amade bikin."

Endamê komîsyona ciwanan Ciwan Aktaş jî nerînên xwe anî ziman û wiha got: "Yên temen mezin nikarin ji feraset û bîreweriya ciwaniyê baş têbigihîjin. Ew bêtir meseleya ciwanan li gor çawaniya dema ciwaniya xwe dinirxînin. Ji ber vê yekê pêwîst e em ciwan di derbarê xwe û xebatên xwe de biryar bidin. Armanca me jî ew e ku ji bo xwegihandinê em klûbên felsefeyê ava bikin, di bin banê Komeleya Çirayê de xebatên çand û hunerê pêk bînin û em ciwanan tevlî van xebatan bikin."

Ciwana bi navê Esin Tekin ku di nav xebatên ciwanan de cih digire girîngiya xwegihandina ciwanan destnîşan kir û got: "Armanca me ya sereke ew e ku em xwe bidin nasîn. Ger em xwe baş bidin nasîn em ê di nav civakê de jî bi hêz bibin."

Xortê bi navê Metin Miraz ku di nav xebatên PSK'ê de cih digire jî bandora neyênî ya asîmilaysyonê ya li ser ciwanan destnîşan kir û pêwîstiya tekoşîna li dij asîmilasyonê anî ziman. Miraz, ji bo vê yekê jî rêxistinbûn ferz kir û got: "Divê ciwan yenên fedakirin."




### "Em nikarin xortan beşdarî xebatan bikin"

Nunerê PDK-Bakur Bora Balin jî di derbarê xebatên ciwanan de ji BasNûçe'yê re ragihand ku ew nikarin di vê rewşê de ciwanan birêxistin bikin û beşdarî xebatan bikin. Balin da zanîn ku ji ber hin sedeman kongreya wan pêk nehatiye û ji pêknehatina kongreyê û rewşa aloz, gelek xebatên wan ên ciwanan rawestiyane. Balin got: "Berê dema me xebatek pêk dihanî bi sedan ciwan tevlî dibûn, lê belê niha ji sedî deh jî tevlî nabin. Gel pir ditirse. Di meclîsa partiya me de yek kes nûnertiya ciwanan dike û di vî warî de kêmasiyên me pir in. Me berê li komeleya Ehmedê Xanê xebatên xwe pêk dihanî, lê mixabin ji ber ku di nav partî û komeleyê de pirsgrêk derketin ew xebatên me jî rawestiyan."

Balin ragihand ku pir ciwanên ku beşdarî xebatên wan dibûn hene, lê hejmarên wan ne diyar in û heta niha wan ji bo ciwanan saziyek danemezirandine, tenê wek baskekî, ciwanan di partiyê de cih girti ne. Balin da zanîn ku ew projeyekê amade dikin da ku jin û ciwan bêtir beşdarî partiyê bibin. Balîn wiha domand: "Berê me ji bo kêmasiyên ciwanan bibersivînin me li ser zimanê kurdî, dîroka kurd û tevgerên kurd karê perwerdehiyê pêk dihanî û ji 15 rojan carekê jî panel li dardixist. Ciwan dahata civakê ne. Yên dahata civakê têdigihîjînin jin in û yên ku jinê biparêzin jî ciwan in. Ji ber vê yekê em girîngiyê didin jin û ciwanan."

### PAKURD: Tenê ciwan

Pirsgirêka xortan xwedî polîtîkayeke girîng e ji bo PAKURD'ê. PAKURD dema hat damezrandin şertekî balkêş xistibû bernameya xwe, ew şert jî ev e ku mirovên temenê wî ji 40'î berjortir be nikarin bibin endamê PAKURD'ê. Helbet ev rêbaz hin bertekên erênî û neyênî jî bi xwe re hanî. Nunerê PAKURD'ê Mehmet Şarman di derbarê girîngîdayina ciwanan a PAKURD'ê de ji BasNûçe'yê re axivî û got: "Partiyên Kurdistanî yên ji bilî HDP'ê û DBP'ê piranî ji kadroyên kevin pêk tên. Bi salan e di nav vî karî de ne. Baş, xerab xizmetên baş kirine. Lê îroj ev kadro êdî nikarin ji civatê re bibin bersiv. Rewş û civak guheriye, lê fraksiyon û kadroyên kevn nehatine guhertin. Pêwîstiya van partiyan bi dînamîzmê heye. Ne wisa be, yek partî jî nikare dengê xwe bigihîne xortan û rasterast civakê. Bawer dikim roj bê, wê gelê me bibîne ku em di biryara xwe ya 40 saliyê de çiqas mafdar in."

Şarman xwest ku bila kes xwe nexeyidîne, lewre ew hurmetê didin keda wan, lê ji wan tika dikin ku êdî teqewîd bibin. Jixwe ew ê dîsa bi wan re bişêwirin û ew ê dîsa rûmata xwe şanî wan bidin, lê bila pêşiya ciwanan vekin. Şarman wiha pê de çû: "Li Bakur potansiyeleke pir baş heye û ev jî piranî ji xortan pêk tê. Îroj em ji kadroyên kevn bipirsin, ew ê nikaribin navê çend nivîskarên nûjen bibêjin. Yên ku navê çend govarên ku nû derdiçin bizanibin û akademsîyenên nû binasin bila dest ji karên ciwanan vekêşin. PAKURD, wê her li ser meseleya ciwanan bisekine. Jixwe PAKURD partiyeke ramanî ye, gelek ciwan û cuda ye. Malên me yên ciwanan hene. Komeleyên me yên çand û hunerê hene. Heta Komeleya Zanînê jî heye. Hemû jî xweser in û ji ali ciwanan ve têne birêvebirin. Ew çi bixwazin wî dikin, lê em bi hev re girêdayîne. Wek rêveberiya partiyê em destwerdana karên wan nakin, lê divê ew jî ji xeta kurd û Kurdistanî dernekevin."

Li Bakur partî û rêxistinên derveyê PKK'ê her bi giranînedana ciwanan têne rexnekirin. Di civîn, panêl û xebatên wan de hejmara zêde ya sorspiyan bi zelalî derdikeve pêş û ev yek bandoreke neyênî li ser wan dike. Her çend ev partî û rêxistin di warê ciwanbûyînê de dest bi hewldanan bikin jî xuya ye ev yek bi siyaseta giştî ya Bakur û bandora siyasetê ya li ser ciwanan re têkildar e. Di derbarê xebatên ciwan, ciwanbûn û ciwanan de me raya ciwanan wergirt.

### "Ji sedî 50 endamên me ciwan in"

PAK jî xebatên xwe yên ji bo ciwanan di bin banê Komeleya Çarpel dimeşîne û wisa xwe digihîjîne ciwanan. Cigirê Serokê Giştî yê PAK'ê Nuri Sınır jî di derbarê xebatên ciwanan ên PAK'ê de ji BasNûçe'yê re ragihand ku ew ji bo ciwanan gilek projeyên girîng dimeşînin û her wiha li şaxên PAK'ê yên Mûş û Wanê ji sedî 50 endamên wan ciwan in. Sınır got: "Çarpel ji bo ciwanan qadeke firawan e û di gellek waran de xebatan pêk tîne. Em destwerdana karên ciwanan nakin û ew azad in. Car caran em bi hev re dicivin, lê em bawer dikin ku em ê gelekî bi pêş bikevin. Di derbarê xebatên ciwanan de li Amedê pir kêmasiyên me hene. Hevalekî me ku ji xebatên rêxistinkirina ciwanan erkdar e heye, lê divê em ji bo kelecan û daxwaza ciwanan a ku hewldidin felsefeya Kurdistanî bikin binemaya bernameya partiyê derfetan peyda bikin û wisa xebatan pêk bînin."

### HAK-PAR jinûve

Serokê Şaxa Amedê yê HAK-PAR'ê Vasif Kahraman jî li ser babetê ji BasNûçe'yê re axivî û got: "Kar û barên me yên ji bo ciwanan pir kêm in. Beriya ku PSK ji me veqete me bi hevre di Komeleya Çirayê de xebatan dimeşand. Kongreya me nû çê bû û ji ber vê yekê xebatên me rawestiya ne. Em ê hemû xebatên xwe ji nûh ve saz bikin. Bêguman, di nav van xebatan de kar û barên ciwanan jî hene."


Bora Balin, Vasıf Kahraman, Mehmet Şarman, Nuri Sınır

**Sîmir Rûdan:**

# Sîmir çîroka lêgerînekî ye

Ercan Ekinci

Di salên dawîn de ji nava kurdan gelek ciwan û kesên muzîkjen ku di berhemên xwe de form û bingehên ku li cîhanê bi heyranî têne şopandin bi kar tînin. Muzîka kurdî ku piştî normalîzebûna rewşa siyasî bi pêngavên girîng hevrikiya qelîteya muzîka cîhanê, bi destê navên nû bêhtir geş û bi deng dibe.

Ji van kesên ku bi formên gerdûnî muzîka kurdî dixemilîne yek jî Sîmîr Rûdan ê Cizîrî ye ku bi yekem albûma xwe ya bi navê 'Bi çîrokî' tarza rockê bi dengbêjiyê ve dihelîne. Rûdan, li ser berhema xwe ku di warê bingeh û şirovekirinê ve balê dikşîne û bi gelemperî li ser muzîka kurdî pirsên me bersivandin.

**Di serpêhatiyên jiyana te de mûzîk kengê destpêkir?**

Peywendiyên hinek kesan ji mûzîkê re zêdetir û xurtir in. Ez dibêjim qey di zaroktiya xwe de ev tişt li min kifş bû. Ez niha çavekî din dinêrim zaroktiya xwe; wê çaxê jî mûzîkê zehf bala min dikişand. Zarokên Cizîrê şev li ser serêbanan radizana. Em ji re text dibêjin. Tê bîra min ku ez diçûm ser text min resîtalan dida. Di demsala havînê de şev dereng em diçûn li ser text radiketin. Di wê demê de çi strana ku ez fêr bibûm yek û yek min digot. Ez dibêjim têkiliyan min û mûzîkê di wê demê destpêkir. Lê, Li zanîngehê min destpêka enstûrmanan kir.

"Stranên min behsa derûniya mirovekî dike. Carnan behsa derûniya zarokekî an jî behsa derûniya ciwanekê dike. Behsa mirovekî ku tiştek di seran de boriye behsa çîroka wî/wê dike. Kurdek ku baş guh bide stranên min ez bawerim dê xwe dida bibîne."



**Gelo dema ku te li serbanê konser dida, te stranên çawa digotin?**

Wê demê em di bandora derdorê de diman. Wê çaxê di mala me de Arif Cizrawî, Şehrîbana Kurdî, Şivan hebû. Wek din jî di mala me de Belkıs Akkale û İzet Altınmeşe jî lê didan. Min jê wan stran digotin. Carnan jî min arebesk digot. Çima? Çimki ew derdora me herkesê, hevalên min giştî arebesk guhdarî dikirin an jî Pop. Min stranên wisa jî digotin. Paşî di dawîya lîseyê de ez mûzîka kurdî nas bûm. Wê demî di mûzîka kurdî de koman destpêkir bû. Albûma yekem ku min stendibû yê Agirê Jiyan albûma 'Adar' bû. Ew albûm di navbera min û mûzîka kurdî de weke pirekî bû. Paşîre min Ciwan Haco nas kir. Hevalên min yên zanîngehê ji min re Ciwan pêşniyar kirin.

**Çima Sîmir û 'Sîmir' tê çi watê?**

Sîmir navê teyrekî ye, tê wateya 'sî çûkan', 'mir' jî ew ajalên bi bask yên ku koka jor de tînin tê wî wateyê. Ev jî tezeke ku tê wateya 'sî çûkan.' Hinek kes jî dibêjin teyrek mezin e. Di derheqê vê peyvê de tiştî gelek cûda tê gotin. Him mîtolojiyê cûda de em bêjin; cem Farisan tiştek din tê gotin, cem mîtolojiya yûnaniyên kevn tiştên cûda tê gotin. Li gor mîtolojîya yûnaniyan ev nav wek 'Phoenix' derbas dibe. Ev nav di Avestayê de jî derbas dibe. Li Avestayê de ez bawerim behsa çiyayê Zagrosê tê kirin. Tirk li qala 'çiyayê Kaf' dikin. Ev teyr û çûk gelek nêzîkê mirovan e, mirovhez e. Dema mirov li ser vê mîtolojiyê lêkolin dike, hinek fikir li serê mirov ve çêdibin. Min beşa felsefê qedandiye. Kesên ku felsefevan bin her tîm pirsan dikin, li bersîvê pirsên xwe digerin. Ji fikrandinê hez dikin. Heta wusa jî dijîn. Ji ber vê jî min ji vê çîrokê gelek hezkir. Sîmir çîroka lêgerînekî ye.

**Tu dikarî bahsa albûma xwe yê ku navê wê 'Bi Çîrokî'ye bikî?**

Piştî min zanîngeh qedand ez vegeriyam Cizîrê. Li wir min dest bi mamostetiyê kir. Di wê demê de ez ji aliyên afirandinê ve li ser mûzîkê xebitîm. Hêdî hêdî min gotin nivîsandin. Li Cizîrê derfetên mûzîkê hinek kêm bûn. Mûzikvan jî li wir tune bû ku mirov bigihêşte hev qeydan çêbike. Min malê de studyoyek çêkir bû. Min demoyê xwe çêkirin. Aranjiyê mûzîka xwe min li Cizîrê kir. Piştre di sala 2013'en de demsala havînê ez hatim Stenbol. Albûma min jî ji aliyê Ütopya Müzikê ve derket. Ayhan Orhuntaş ji bo min prodîktorî kir. Gotin û mûzîk hemû yên min in. Tenê gotina stranekî yê min û hevalekî min bû. Wek din gotin, mûzîk û aranjiyê albûma xwe min çêkir. Di albûmê de deh stran hene. Navê albûmê çima 'Bi Çîrokî'ye? Lewra me paşî lê nêrî ku gotinê stranên min vegotinekî çîrokî nav gotinên min de hene. Qala tiştekê tê kirin. Ez jî di albûma xwe de wekî vebêjekim.

**Tu di stranên xwe de çi vedibêjî an jî bêhtir qala çi dikî?**

Stranên min behsa derûniya mirovekî dike. Carnan behsa derûniya zarokekî an jî behsa derûniya ciwanekî dike. Behsa mirovekî ku tiştek di seran de boriye behsa çîroka wî/wê dike. Kurdek ku baş guh bide stranên min ez bawerim dê xwe dida bibîne. Qala jiyana bajarvantî di stranên min de tê kirin. Kurd êdî zêdetirin wan li bajaran dijîn. Piştî salên 90'î gund vala bûn hemû ber bi bajaran ve çûn. Wekî din ji aliyên teknolojiyê ve jî hinek pêşketin çêbûne ku ew kesên gundê xwe de jî dijî jiyanekî bajarvanîtî dijî. Ji aliyên çandî, civakî û aboriyê ve guhertin çêdibe. Bandora van guhertinan li ser mûzîkê jî çêdibin.

**Şêwaza mûzîka bawerim te nêzî formên rockê ne. Gelo tu xwe wek rockvan dibînî?**

Ez xwe rockvan nabînim. Di çend stranên min de form û giraniya rockê xuya dike û xwe dide pêş. Şax û beşên rockê jî hene; hin kes min nêzîkê 'Pop Rock'ê dibîn û hin kes jî nêzîkê 'soft rock' dibînin. Mesela stranek nêzîkê 'Country' çûye. Heta ji min hat min him melodiyan û him jî lêdana enstûrmanan oryantalîze kir. Ez naxwazim xwe di kategoriya rockê de bibînim. Lewra ez li ser mûzîka qlasîk jî mijûl dibim. Teqrîben di siberojê de ez albûmekî enstûrmantal jî çêbikim.

**Di derbarê mûzîka de şîrovê erînî gelek in. Rexnegirê mûzîkê Naim Dilmener ji bo te dibêje 'Bryan Adams'ê kurdan.' Ciwan Haco jî bo strana xwe ya navê 'Hey Dilberê' ku te gotibû, te pîroz kir. Tu di derheqê van gotin de çi difikirî?**

Bi rastî bi van gotinan ez motîve dibim. Ez Ciwan Haco ne tenê wekî hunermendekî kurdan ez wî wekî hunermendekî cîhanê dibînim. Min ji Ciwan Haco û mûzîka wî gelek sûd girtiye. Ku mirov ji aliyê yekê wiha bê pîroz kirin, tiştekî pir girîng e.

**Navbera te, wêje û mûzika kurdî çawa ye? Gelo tu kî/kê dixwînî, taybet guhdarî kî/kê dikî?**

Mirov çi bixwe, mirov ew dijî an jî çi bibîne, çi bixwîne û çi bê serê mirov, ev hemû tişt ser te bandorek e. Mirov wek neynikê ye. Tişta ku tu dibînî tu wan tiştan di nava xwe de diqulibînî û wan tiştan nîşanê mirovên din dikî. Ez di zaroktiya xwe de bi dengê Arif Cizrawî mezin bûm. Bavêmin ji gelek jê hez dikir. Ev mûzikvan û hunermendên nû Kerem Sevînç, Ruşen Alkar û Mehmet Akbaş dişopînim. Ez di wêjeyê de jî Hesenê Metê pir hez dikim. Bi rastî şeva ku ez wî nexwînim roja din ez di jiyana xwe kêmasî dibînim.



**Di siberojê de xebatên albûmekî nû heye?**

Ji bo albûmekî behrem têra xwe ketine ser hev. Îcar ez niha li ser rastkirin û aranjiyê wan berheman dixebitim. Ez biqedînim, ez ê dest bi qeydan bikim. Karekî pir ast û beşên wî hene. Ez niha nikarim rojekî diyar bikim, bawerim dê di navbera 6 meh an jî salekî de derkeve.

**Di dawî de tiştek heye ku tu lê zêde bikî?**

Ez Cizîrî me. Mirovekî kurd im û dixwazim mirovahiyê deynim pêşiya netewa xwe. Tenê mirov netewa xwe pêş bixe gelek pirsgirêk çêdibe. Dive mirov xwe ji mirovahîtiyê dûr neke. Ez xwe wek endamê miletekî cîhanî dibînim. Divê mirov di cîhanê de çi dibe çi nabe bişopîne. Çimki bandora civakan li ser hevdu çêdibin. Divê mirov girêdayê cîhanê be û hestiyar be. Çima ez van dibêjim? Ji ber ku pirsgirêkên cîhanê zêde dibin an jî berçavên min wusa xuya dikin. Ji ber vê rewşê ji wan pirsgirêkê ku li ser cîhanê çêdibin weke mûzîkvanekî gelek ez ji aciz dibim.

**Sîmir Rûdan behsa jiyana xwe dike...**

Ez 1981'an li Cizîrê ji dayik bûm. Dibistana xwe ya peşî, navîn û lîse min li Cizîrê qedand. 1992'yan ji ber bûyerên wê demê em salekî li Mêrdînê man. Di 2005'an de li Zanîngeha Hacetepe yê Enqerê min beşa felsefê qedand. Piştre ez ji bo mamostetiyê vegeram Cizîrê. A niha jî ez mamostetiyê rêberî dikim.